

قوباد تاڵەبانی
**حەزناکات پێی بڵێن (لۆبیکار)**

7 ◀

کچان بە ژنهێنانەکەی دڵگرانن
**قازانجی (لاپەڕەی سپی) بۆ زەکەریا نییە**

9 ◀




# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA

Xwînerên Rûdawê bêtir dizanin


**HEVPEYVÎN**

Kevneserokê HADEP'ê Murat Bozlak
**"Bi guhertina destûrê pirsa kurd çareser nabe"**

Di rûpela 11'an de

**Deutschland 1,50 Euro** | Nederland, Belgique, France 1,50 Euro | Schweiz 2,70 CHF | England 1,40 GBP | Sverige 21,00 SEK | Danmark 15,00 DKK

**Hejmar / Nr. 40** | 13 Nîsan /April 2010 | **www.rudaw.net**

Makezagona kevin pîroziya xwe winda dike

## Xetên sor diçirin



Guftûgoyên di derbarê guhertina Makezagona Tirkiyê de didomin. Ji aliyekî ve partiyên muxalefetê CHP û MHP di nav her core hewldanê astengkirina pêvajoyê de ne, ji aliyê din jî BDP bi hêvî ye ku pozisyona xwe ya mifte bi nirxekî bilind bifroşe. Guftûgoyên li hundir û derveyî parlamenê jî nîşan didin ku destûra 82'an beşek mezin ji pîroziya xwe winda kiriye. ▶ 2/15

## "Em girêdayî peymana stratejîk li gel YNK'ê ne"

Di hevpeyvîneke taybetî de di gel Rûdawê, siyasetvan û Cîgirê Serokê Partiya Demokrat a Kurdistanê, Nêçîrvan Barzanî got tevî ku kursiyên PDK'ê gelek bêtirin jî, lê ew ê girêdayî lihevhatina stratejîk a di gel YNK'ê bimînin û anî ziman ku divê aliyên din jî neyên piştguhxistin. Derbarê rapora ku di kovara Gulan de hatiye weşandin û têde rexne li kabîneya Dr. Berhem hatine girtin, Nêçîrvan Barzanî got "Ew boçûna sernivîskar bû, lê ne ya PDK'ê û madem sernivîskar ji aliyê polîtbûroyê ve hat derxistin, ev îsbat dike ku ew ne polîtîkaya PDK'ê ye. Mixabin hin saziyên YNK'ê yan ên nêzîkî wê, xwestin û dixwazin vê mijarê mezin bikin. Lê nabe êdî ew partiyê biazirînin."

Di hevpeyvîna ku wê heftiya pêş di Rûdawê de bê weşandin, Nêçîrvan Barzanî ragihand "Ez bi xwe ji wan kesan bûm ku hertim min hewl daye di navbera PDK û YNK'ê de tebayî hebe. Ew tebayiya di nava Kabîneya Pêncemîn de jî ku bi şanazî ve min serokatiya wê dikir, baştirîn şahide li ser hizir û karên min ên di wî warî de."

Derbarê serdana xwe ya bo Tirkiyê û pêşwazîkirina wî ji aliyê Serokwezîr û Wezîrê Derve yê Tirkiyê ve, Barzanî got "Ew serdana min di çarçoveya peywendiyên siyasî yên navbera Herêma Kurdistanê û Hikûmeta Tirkiyê de bûn. Min nûnertiya birêz Serokê Herêma Kurdistanê dikir."

### Du partiyên Rojhilatê Kurdistanê bûn yek

Yek ji sedemên lawazbûna tevgera azadîxwaza kurd parçebûn û dijberiya hêzên siyasî ye. Parçebûn û dijberiya partiyên kurd bûye yek ji sedemên sereke ku kurd nikaribin di armancên xwe de biserkevin û ji xwe re dezgehek netewî damezrînin. Li her çar parçeyên Kurdistanê ev pirsgirêk tê jiyan kirin.

Dixuye ku du partiyên Rojhilatê Kurdistanê gihane wê bîr û raya pêwîstiya yekîtiyê û hêza xwe kirine yek. Yekîtiya Komeleya Şoreşger a Zehmetkêşên Kurdistanê û Partiya Sosyal Demokrat a Kurdistan (Rojhilat) ku berê ji Komeleyê veqetiyabûn, beriya çend rojan bûn yek û navê rêxistinê nû jî kirin "Komele - Partiya Sosyal Demokrata Kurdistanê". Rêxistina nû xwedî hêzeke çekdar bi navê 'Hêza Pêşmergê Kurdistanê' ye jî û ew hêz niha li Qendîlê bi cih e. ▶ 2

### Hevjîniya ji bo demekê

Li Silêmaniyê çarêka jin û mêran hevdu dîsa berdidin ▶ 6

### Kurdên Îmaraten Erebî

Dixwazin vegerin Hewlêreke weke Dubey azad û pêşketî ▶ 7

### Sînemaya Dîaspora

Fîlmê kurdî "Min Dît" dikeve sînemayên Almanyayê ▶ 8



Ji bo guhertina Makezagonê:

# AKP pêwîstî piştgiriya BDP'ê ye

**Enqere (Rûdaw) -** Tirkiye qolincên makezagona nû dijî. Piştî ku AKP bi Dezgeha Bilind a Dozger û Dadweran (HSYK) û Dadgeha Makezagonê re ket krîzeke me-zin, guhertina desthilatdariya van dezgehan jî tê de, pakêtek 30 xalî ji serokatiya meclîsê re hat pêşkêşkirin. Lê AKP bêyî ku guhertina van xalên makezagonê bibe referandûmê di meclîsê de dest bi lêgerîna qebûlkirina van xalan kir. CHP û MHP a mixalif, bi mahneya ku AKP destêwerdana guhertina makezagonê dike, deri- yên xwe ji vê guhertinê re girtin. BDP a ku bûbû hêviya AKP jî şert û şirûtên pir giran rapêşî hikûmetê kir. AKP a ku mixalifa navxweyî jî li ber çav digre, hêviya xwe bi 11 wekîlên serbixwe ve girê da.

Piştî ku AKP pêşniyaza guhertina makezagonê pêşkêşî meclîsê kir, partiyên ku di meclîsê de tên temsîlkirin helwestên xwe diyar kirin. Ji bo ku pêşniyaza guhertina makezagonê biçe referandûmê, pêwistî bi 330 dengên meclîsê heye. Bêyî ku biçe referandûmê jî 367 deng pêwist in. Ger di gera yekemîn de 330 deng neyên bidestxistin, pêşniyaz tê redkirin.

## Krîza îmzayan

CHP û MHP deriyên xwe bi temamî ji AKP'ê re girtin. BDP pêşniyaza ku benda hilbijartinê ji sedî 10 dakeve ji sedî 3 pêşniyazî AKP kir û helwesta xwe ya bazariyê diyar kir. Di nav van şertên BDP de serbestberdana endam û rêvebirên partiya wan jî heye. Lê di nav AKP de şertên BDP wek "şertên ku pejirandina wan zehmet e" tê dîtin. Di nav refên AKP de "dîtina li Xabûrê devê me şewitî, eger carek din em bi BDP re tevbigerin, em ê herêmên din yên Tirkiyê jî ji dest berdin" serdest e. Wek BDP, DSP a ku di meclîsê de bi şeş wekîlan temsîl dibe jî ji bo pêkhatina daxwazên xwe seferbûr bûye. DSP berî guhertina makezagonê, dixwaze ku bendava hilbijartinê bê nîqaşkirin.
AKP a ku ji hinek wekîlên xwe bi şik û goman e, ji aliyekî ve dixwaze dilê xeydokên xwe xweş bike û ji aliyê din ve jî yeko yeko bi 11 wekîlên serbixwe re hevdîtin kir. Lê di van hevdîtinan de jî encama ku dihat xwestin bi dest neket.

Di dema hewldana AKP a bidestxistina 330 dengan de CHP û MHP ragihand ku awayê pêşkêşkirina pêşniyaza guhertina makezagonê ne rewa ye. Di pêşniyazê de reşkirina nav û îmzaya serokê meclîsê M. Alî Şahin û hinek wekîlên ku îstîfa kiribûn bû sedema nîqaşek mezin û diyar bû ku ev kiryar dikare ji aliyê Dadgeha Makezagonê ve bibe sedema lêpirsînê.

## Şerê taktîkan

Li ser vê sosretê, nîqaşên ku li ser îmzayan hatin kirin AKP mecbûr kir ku gavan bi paşde bavêje û zêdeyî 50 parlamenterên AKP'ê îmzayên xwe bi paş de kişandin. Bi vî awayî, ji ber 184 îmzayên ku ji bo pêşniyazkirina guhertina destûrê pêwist bûn nehatin dîtin, pêşniyaz bi paşde hat kişandin.

Roja Pêncşemê wê Komisyona Makezagonê pakêta guhertina makezagonê bigre dest. Lê tiştê tê dîtin ew e ku wê Meclîsa Tirkiyê ji ber sedema pêşniyaza guhertina makezagonê di navbera CHP û AKP de bibe hola şerê taktîkan. CHP a ku dixwaze bi temamê wekîlên xwe ve tevlî mizakereyên Komisyona Makezagonê bibe, ji bo ku astengiyan derxe, wê hewl bide ku bi hezaran pêşniyazên guhertinê bide. MHP nafikire ku pêşniyazan bide, lê BDP li ser pêşniyazên guhertina makezagonê bi xurtî dixebite.



# Du partiyên Rojhilatê bûn yek

**Azad Kurdî**

Di çend rojên borî de, Komeleya Şoreşger a Zehmetkêşên Kurdistanê (Pêvajoya Yekgirtinê) bi serokatiya Ebdula Konepûşî, li gel Partiya Sosyal Demokrat a Kurdistan (Rojhilat) wek du baskên veqetiyayî yên Komeleyê hev girtin. Navê Komela nû jî 'Komele- Partiya Sosyal Demokrata Kurdistanê' ye.

Partiyên Rojhilatê Kurdistanê bi destê nexweşiya parçebûnê û pirsgirêkên navxwe yên zêde rûbirû ne, ku Komele bi vê sedemê herî zêde zirar dîtiye. Vê rewşê jî nîgeranî û nerazîbûnek berfireh di nav alîgirên partiyên Rojhilatê Kurdistanê de çêkiriye.

Piştî wan cudabûnên ku sala 2007 – 2008'an di Komelê de çêbûn, di navbera aliyên Komeleyê de hin gav ji bo yekgirtina nû û komkirina mala Komele dest pê kirin. Yekemîn hewldan di rojên borî de çêbû ku her du Komeleya Şoreşger a Zehmetkêşên Kurdistanê (Pêvajoya Yekgirtinê) û Partiya Sosyal Demokrat a Kurdistan (Rojhilat) yekgirtina xwe ragehandin.



Ebdula Konepûşî

Sekreterê Komeleya Zehmetkêşên Kurdistanê Omer Îlxanîzade ne veşart ku li gel Komeleya Ebdula Muhtedî civiyane û diyar kir: "Civîn dostane bûye û hê negihaye wê astê ku bi fermî li ser yekgirtinê gotûbêj bên kirin." Îlxanîzade bi pêvajoyê geşbîn e û got: "Bi van corê civînan geşbîn im û hêvî dikim encamên baş çêbin, em ji bo diyalog, dostanî û hevxebatiyê amade ne."

Berdevkê Komele - Partiya Sosyal Demokrata Kurdistanê, Hêriş Elîzade, eşkere kir ku partiya wan a nû xwedî hêza çekdar e, navê wê 'Hêza Pêşmergê Kurdistanê' ye û niha li Qendîlê niştecih in û Ebdula Konepûşî serkirdayetiya wê hêzê dike. Di derbarê cîhgirbûna wê hêza li Qendîlê de Elîzade diyar kir: "Ziyan û xesarên kampan ji sûd û fêdeyên wê zêdetir bûne. Hêzên me li Qendîlê ne û em hêvî dikin li cihên din jî rê bidin me, lê binkeya me ya sereke Rojhilatê Kurdistanê ye." Herçiqas berdevkê KCK'ê Ehmed Deniz berê di hevpeyvînekê de ji Rûdawê re red kiribû ku hêza çekdar a Komele li Qendîlê heye, lê Hêriş Elîzade ragehand: "Baskê me yê leşkerî li Qendîlê ye."

Li gor gotina berdevkê wê partiyê, yekgirtina wan ji bo nehevgirtin û telabelabûna hêzên kurdî bersiveke û nerînên xwe wiha anî zimên: "Neyekgirtîbûna opozîsyona kurd li Rojhilatê Kurdistanê li ser lawazbûna tevgera xelkê Kurdistanê bandora cidî kiriye. Di heman demê de ev yek ji sedemên serneketina tevgera azadiya Kurdistanê ye û dirêjbûna temenê dagirkeriya li Kurdistanê ye." Hêriş Elîzade eşkere kir ku partiya wan amade ye li gel aliyên din yên Komele hev bigre.

Hêrîş Elîzade ragehand ku bernama partiya wan li ser bingehek cuda ji Komeleyên din hatiye darêtin û axaftina xwe wiha qedand: "Me rêbazek bi tevahî nû girtiye pêşberî xwe. Ya yekem beşdariya proseya rizgarkirina Kurdistanê û avakirina hikûmetek demokratîk ku ji aliyê piraniya xelkê Kurdistanê ve tê hilbijartin, herwiha em li ser asta Kurdistanê partiyek seranserî ne û dewleta Îranê jî wek dagirkerê Kurdistanê dihesibînin. Em daxwaz dikin ku artêş û hêzên din yên dewletên dagirker ji Kurdistanê derkevin."

**Rûdaw**
Rojnameyeke siyasî û heftane

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Serokê Civata Rêvebir**
Nûredîn Weysî
nuradinwaisi@rudaw.net

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Azad Kurdî
azadkurdi@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Sîdar Bengîn Epozdemir
sidar@rudaw.nl

**Dîzayner**
Memo Celâl

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Dipl. Kfm. Abdulletif Canimana
info@canimana.de

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Rûdaw bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.







Civata Gundê Şeşe yê kakeyiyan hawar dike:

# Saddamekî din dixwaze me ji ser axa me derxîne!

## Axayekî kurd moleta du hefteyan daye gundiyan, da ku gundê xwe vala bikin û gundiyan tehdîd dike

**Soran Behaedîn** Kerkûk

Di serdema rejîma Baasiyan de beşek Kakeyiyên sînorê navçeya Daqûq ji ser axa wan hatin derxistin û zeviyên wan ên çandinê li ser axayên kurd û ereb hatin qeydkirin. Piştî nemana wê rejîmê Kakeyî vegeriyan, lê niha dîsan axa dixwazin zeviyên wan dagîr bikin.

Qezaya Daqûqê 45 km dûrî Kerkûkê ye. Hejmara rûniştvanên wê 58 hezar kes in û bêtiriya wan jî kurd in. Li wir proseya erebkirinê pir hatiye birêvebirin, gundê Şeşe jî yek ji gundên wê devera Kakeyî'yan e ku dikeve nêzîkî çiyayê Hemrîn.



**Piraniya rûnişvanên derdora navçeya Daqûqê kurdên kakeyî ne**

Husamedîn Necmedîn ji civata gund giliyên xwe gihandin Rûdawê û amaje da wê yekê ku malbata wan ji sala 1934'an ve li wî gundî dimînin, heta serjimêriya sala 1977'an jî li wî gundî hatine qeydkirin û wê demê ti erebek li wan deveran nebû. Lê rejîma Baas ew veguheztin Hewlêr û başûrê Îraqê û erebên Îraqî û Siûdî anîn gundên wan. Piştî nemana rejîma Baas, malbata Husamedîn vegeriyan gundê xwe, ew dibêje: "Me şer kir heta me ereb derxistin, niha ereb newêrin vegerin."

Di destên Husamedîn de belgenameyên sala 1968'an hene û diyar dikin ku gund yê wan e. Ew behsa axayekî kurd dike ku berê caşê Saddam bû: "Îbrahîm Axa çûbû cem Mam Celal û jê re gotibû ku me destê xwe daniye ser erdê wî, Mam Celal jî jê re gotiye here li gor yasayê erdê xwe vegerîne." Îbrahîm Axa jî biryara herifandina xaniyên Husamedîn ji Dadgeha Kerkûkê anî û roja 4'ê Nîsan a 2010'an bi şofel û polîsan hate ser gund. Îbrahîm Axa dibêje ew ê gund xerab bike û kes jî nikare biaxive. Çunkî ew zengîn û xwedî desthelat e." Niha mohleta 14 rojan ji xelkê re hatiye dayîn ku ew gund vala bikin. Husamedîn bi xemgînî dibêje "Îbrahîm Axa bûye Saddamekî din, ew bi qeydên saxte me derdixîne. Daxwaza me ji desthilata Kurdistanê ew e ku hevkariya me bike da em neyên dûrxistin."

Xalid Mihemed jî cotkarekî din ê gundê Şeşe ye. Ew jî dibêje ku "belgename di destê wî de hene ku di sala 1976'an Îbrahîm Axa hemû milk û zeviyên xwe û malbata xwe ku nêzîkî 34 gundan bûn, firotine ereban. Ew herwiha dibêje ku di sala 1992'an beşek erdê wan bi navê ereban û beşek jî bi navê Îbrahîm Axa yê kurd ku neteweya xwe kiribû ereb, hatin qeydkirin".

### Bila Hikûmeta Herêma Kurdistanê mudaxelê bike

Qaymeqamê Daqûqê Dr. Emîr Xuwakerem jî ji Rûdawê re got ku "prosesa erebkirinê gelek pirsgirêk çêkirine û nêzîkî 1000 malbatên ereban li Daqûqê bi cî kirine. Beriya demekê Îbrahîm Axa xwestibû beşek ji wan zeviyan bifiroşe".

Dr. Emîr dibêje: "Salih Mutleg (siyasetvanekî ereb e û dijminê kurdan e) hatibû û dixwest wan zeviyan bikire. Pirsgirêk ew e ku Husamedîn bi tenê ye, ez ê hewil bidim ku biryara herifandina gund hinekî paşde bihêlim. Eger belgeyên Husamedîn jî hene, bila ji xwe re parêzerekî bigire." Ew herwiha dibêje "Pêwîst e Hikûmeta Kurdistanê mudaxeleyê bike."

Greva birçîbûnê:

# Zarok bi ser ketin!

## Piştî ku daxwazên zarokan bi cîh hatin, grêva birçîbûnê bi dawî bû

**Köln (Rûdaw) -** Li girtîgeha Maltepe ya Stenbolê beriya du hefteyan 14 zarokan dest bi grêva birçîbûne kiribûn û vê bûyerê di rojeva Tirkiyê de cihek taybet girtibû. Ji Buroya Dadmendî ya Zehmetkêşan parêzger Sezin Uçar li ser rewşa zarokan daxuyaniyek da rojnameya me.

Uçar diyar kir ku li girtîgeha Maltepe 14 zarokên ku bi terorê tên tawanbarkirin, ji roja Duşembê heya roja Înê ketine grêva birçîbûne. Zarokan wekî sedema destpêkirina grêva birçîbûnê mercên xerab ên girtîgehê û nedermankirina hevalên xwe nîşan dan.

Uçar diyar kir ku "rewşa 2 zarokan gelek xerab e, yek jê xwîn tavêje. Pêwiste zarok herin nexweşxanê lê belê wan dişînin revîrê û dîsa li girtîgehê vedigerînin. Zarok daxwaz dikin ku bi hevalên xwe re di heman mezelê de bimînin, lê îdara girtîgehê destûr nade. Yek ji sedema grêva birçîbûnê ev e".



Parêzgera zarokan bal kişand ser xalek din û got; "Êvara Duşembê zarok bi idiaya ku derneketine hejmarê, ji aliyê 56 gardiyanan ve lêdan xwarine. Nêzîkbûnên keyfî berdewam dikin. Kîjan wextî bixwazin zordarîya psîkolojîk û fîzîkî li hember zarokan didin meşandin. Pewiste pêşiya van nêzîkbûnên keyfî û derveyî mirovatiyê bên girtin"

Uçar daxuyand ku "di van rojên dawî de îdare hewl dide ku têkiliyên zarokan bi derve re qut bike. Nameyên ku malbatên zarokan, Komela Mafên Mirovan û saziyên civakî yên sivîl ji wan re rêdikin, nagihin destên zarokan û ji alî îdarê ve destdanîn li ser wan çêdibe. Bi zanebûn têkiliyên zarokan bi derve re tên qutkirin û naxwazin ku agahî bên hindurû"

Uçar diyar kir ku "zarok ne ji ber doza ku li girtîgehê ne ketine grêva birçîbûnê, lê ji bo başkirina şert û mercên ku tê de ne û nêzîkbûnek mirovatî bibînin çûne grêvê."

Li ser vê bûyerê, malbatên zarokan û Komela Mafên Mirovan bi rêya parêzgeran ji berpirsiyarên girtîgehê re nameyek şandin. Roja Înê îdara girtîgehê her du zarokên nexweş ji bo dermankirinê rakirin nexweşxanê. Zarokên ku daxwaz dikirin ew û hevalên xwe bi hevre biminin, bi destûra malbatên xwe wê di heman odê de biminin. Piştî ku daxwazên zarokan bi cîh hatin, grêva birçîbûnê bi dawî bû.

## Guherînên sistema kemalist qels bike, ji berjewendiya Kurdan e!

**Bayram Ayaz**



Li Tirkiyeyê mijara sereke ya rojeva siyasî guherînên zagona bingehîn e.

AKP paketekî ji 29 xalan pêkhatî amade kir û anî parlamenê, nuha tê gengeşe kirin. Ev hewldan parçeyek e ji şerê nabeyna hêzên statukoparêz û hikûmeta AKP'ê. Hêzên demokrat û lîberalên rasteqîn û kurdên serwext û dûrbîn, cihê wan li gel reformxwazan e, ew li dijî staukoparêzan in. Qesda me ji hêzên statukoparêz, alîgirên sistema kemalist û tirkçiyên turanî ne.

Sistema kemalist sê stûnên xwe heye. Stûna bingehîn ordî ye. Stûna duyemîn dadgehên bilind in. Ev jî Dadgeha Destûrê, Dadgeha Temîzê (Yargitay), Mahkemeya Bilind a Îdarî (Daniştay) û Dezgehê Bilind a Hakim û Sawciyan (HSYK) e. Stûna sêyemîn, partiyên siyasî (CHP, MHP) û burokrasiya dewletê ye. Medya, aborîvan û dezgehên medenî jî bûne du alî; hin jê piştevaniya sistema kemalist dikin, hinek ji wan jî dilxwazên gûherînan û nûjeniyê ne.

Li Tirkiyeyê berhevdan di nabeyna van herdu aliyan de diqewime.

Destûr, qalibeke yasayî û siyasî ya dewletê ye. Destûra tirkan (1982), destûra generalan e, li gor dilê wan hatiye amade kirin. Êdî îro herkes dizane ku ev qalib li vî welatî nayê. Ji bo demokrasiyê eybeke û li pêşiya pêşkevtinên sosyalî, çandî û aborî astengeke mezin e.

Li Tirkiyeyê nod sal e dewlet di destê kemalistan de ye. Carna partiyên ne kemalist bi dengê xelkê dibin hikûmet, lê nikarin bibin desthilat. Desthilata dewletê hertim dimîne di bin kontrola kemalistan de. Ji bo vê yekê, ji vê sistemê re dibêjin, rejîma dewletên kûr. Dewleta kûr sistema kemalist e. Prensibên kemalizmê, yek zimanî, yek kulturî, yek alayî, yek dewletbûn, yek netewetî ye. Destûr bi her awayî vê sistemê diparêze. Ordî parêzvanê çekdar e, dadgeh parêzvanê dadî ye, partiya M. Kemal CHP jî borezana siyasî ye.

Kemalist bi dengan qet nebûne desthilat, partiya wan hertim maye di muxalefetê de, nuha jî wisa ye. Ordî jî van salên dawî hêz û qudreta xwe wenda kir. Êdî nikare zêde desttêwerdanan bike. Dûvikê generalan bi NATO û Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê ve girêdayî ye. Li Tirkiyeyê NATO û Amerîka pê ne razî be, ordî qet nikare darbe bike. AKP heşt sal in hikûmet e, burokrasiya dewletê hinekî guhertiye. Wek mînak polis û istîxbarat (MIT) êdî bi gotina ordiyê nakin.

Destê kemalistan de maye dadgehên bilind. Ew jî erkên xwe parastina sistema kemalist qenc bi cîh tînin. Astengiyên ku li pêşiya mahkemeya Ergenekoniyan, general û zabitan derdixin, delîlê her tiştî ye.

Hewldanên AKP'ê, xizmeta qelskirin û şikestina stûna sêyemîn dike. Ev jî ji berjewendiya kurdan e. Hewce ye kurd piştevaniya vê gavê bikin. Hêvîdar im, parlamenterên BDP'ê dengê xwe ji bo qelskirina sistema kemalist bi kar bînin.



Butçeya Kurdistanê ya 2010'an 10 milyar e

# Butçeyeke bê plan û pir fêlbazî

**Cewher Namiq Salim***



(Wêne: Rûdaw)

**Cewher Namiq Salim**

Piştî çar mehan ji dema yasayî, roja 19'ê Çileya 2010'an Serokwezîrê Kurdistanê projeya butçeya sala 2010'an a kabîneya şeşem a Kurdistanê ragihand. Piştî rojekê, me têbînî, bîr û baweriyên xwe li ser şêwaz û dema ragihandina butçeyê pêşkêşî "Rûdaw"ê kirin. Li 22'ê Sibat'ê jî, angu piştî ku zêdeyî 2 mehan bi ser dema pejirandina yasaya butçeyê derbas bûn, ew di rûniştineke awarte ya parlamenê de ket ber gotûbêj û gengeşeyê.

Bi dirêjahiya 90 salên borî yên navçeyên Silêmanî, Hewlêr û Duhok ku îro jê re dibêjin Herêma Kurdistanê û di dema 19 salên temenê hikûmeta wan de, butçeya 2010'an mezintirîn û bê serûbertirîn butçeya bê pilan û pir fêlbazî ye. Helbet dema ragihandina butçeyê di destpêka proseya hilbijartinên Parlamena Îraqê de bû, angu serwet û samanên xelkê bo propagande û xizmeta lîsteya herdu partiyên desthilatdar, PDK û YNK'ê, tevî lîstika hilbijartinan kirin. Ev jî ne dirust bû, pêwîst bû hikûmet di vê qonaxê de serbixwe bimaya û butçeyê jî hêz û pêkhate nêzîkî hev bikirana.

Di destpêka rûniştina roja 22'î Sibat a 2010'an a parlamen de derket ku lîsteya partiyên hukimdar dixwaze butçeyeke zêdeyî 10 milyar Dolaran di dema ji 10 demjimêran kêmtir de derbas bike. Lê hişyarî û cidiyet a opozisyonê ev hewldan têkbirin û paşî li 4'ê Adar a 2010'an, bi piraniya dengên parlamenteran, rûniştin heta piştî hilbijartinan hat paşxistin.

Ji naveroka butçeyê, dem, gengeşe û gotûbêjên li ser wê, me çi dît û me çi bihîst û em li benda çi bimînin?

Aliyekî posîtîv ê vê butçeyê ew e ku di dîroka 19 salên temenê Hikûmeta Herêma Kurdistanê de, ev cara yekem e butçeyeke ku ji zêdeyî 10 milyar Dolaran pêk tê li ber dest e. Herwiha zêdekirina moçeyên xelkên xizan, sozên kêmkirina meaşên berpirsên bilind û belavkirina butçeyê û projeyên pêşniyarkirî di malpera parlamenê de, mînakeke din e.

Niha butçeyeke ji 10 milyar Dolaran zêdetir li ber destên hikûmet, parlamen û gelê me ye, li herêmekê ku rûniştvanên wê ji 4 milyon kesan kêmtir in. Ev jî butçeyeke mezin e ger bê hevberkirin di gel gelek welatên din, weke mînak; welatê Urdun ku hejmara rûniştvanên wê bêtirî 6 milyon ne, butçeya wê ya par 5.5 milyar Dolar bûn. Sûriye jî ku hejmara xelkê wê bêtirî 21 milyon e, butçeya wê 9.2 milyar Dolar bûn. Li Lubnan jî 4 milyon mirov dijîn û butçeya wê 8.4 milyar bûn. Boliviya jî 8 milyon kes lê dijîn û butçeya wê 8 milyar bûn. Etiyopya xwedî bêtirî 80 milyon danişvan e û butçeya wê kêmtirî 5 milyaran bû.

Derbarê aliyên negatîv ên butçeyê jî, pir tişt hatin gotin. Li vir ez pêwîst dibînim bala xwendevanan bikişînim ser 3 diyarokên tirsnak li ser niha û dahatûya ezmûna Herêma Kurdistanê: Divê lîsteya herdu partiyên desthilatdar, PDK û YNK, bi awayekî cidî bîr li wan bike û opozisyon jî hûrtir û cidîtir li wan bikole û hikûmet van xalan libergav bigire:

1- Têkelbûna hizb û hikûmetê:

Kontirolkirina deshilat, serwet û samanê ji aliyê herdu partiyên fermandar bûye sedema wê yekê ku nêzîka ji sedî 62'ê butçeya me rasterast yan ne rasterast bikeve xizmeta van herdu partiyan.

2- Li ser asta ewlekariya netewî:

Xericbûna ji sedî 60'ê butçeyê bo meaşên hikûmetê, metirsiyeke li ser herdu partiyên desthilatdar, hikûmet, civaka kurd û pirsgirêka kurdî ye jî. Herwiha hatina ji sedî 97'ê butçeya me ji Bexda, desthilata herêmê bi Bexdayê ve girê dide û xweçemandina li himber hêzên derveyî ye. Ji vê wêvetir jî xelkê fêrî jiyana meaşxweriyê dike û ev bi xwe jî diyarokeke din a metirsîdar e li ser ewlekariya me ya netewî.

3- Destêwerdana Civata Wezîran di karûbarên Parlamen û desthilata dadwerî ya Herêma Kurdistanê de, astengkirina mafekî wan ê sereke ye ku yasayê ji wan re rewa û misoger kiriye.

Wate bi hemû pîvanan pêwîst bû ku komisyonê û komîteyên aborî û darayî daxwaz ji serokayetiya parlamenê bikirana ku butçeya xwe ji hikûmetê re bişînin bo pêdeçûn, sererastkirin û jinûve vehandina wê. Ango baştire butçeya 2010'an li hikûmetê bê vegerandin.

Tevaya raporta Cewher Namiq di www.rudaw.net de.

**Sekreterê berê yê PDK û yekemîn Serokê Parlamena Herêma Kurdistanê bû*

Wezîrê Derve yê Îsrailê Lieberman:

## Bila Erdoğan şîretan li Îsrailê neke



**Evigdor Lieberman**

**Rûdaw –** Wezîrê Derve yê Îsrailê Evigdor Lieberman ji nav siyasetvanên Îsrailê kesekî awarte ye. Ji ber ku herdem gengeşê di siyaseta welatê xwe de peyda dike û carekê li ser xwe gotibû: "Ez herdem kesekî gengeşekar im, lewre herdem hiz û nerînên nû pêşkêş dikim."

Lieberman hefteya borî di derbarê siyaseta Tirkiyê û Serokwezîrê Tirkiyê Recep Tayyib Erdoğan de hinek daxuyaniyên tund dan, rexne li Erdoğan girt û ragihand ku pêwîst e Erdoğan "Şîretan li Îsrailê neke, lê hewl bide pirsgirêka kurd li Tirkiyê çareser bike. Erdoğan dixwaze bibe wek Qezafî û Hugo Chavez."

Piştî van gotinên Lieberman, serokwezîrê Tirkiyê û bi taybet jî çapemeniya Tirkiyê bi tundî li dijî wî derketin û rexneyên giran li Lieberman kirin û ew di refê dijminan de rêz kirin.

Parêzger Abdullah Demirbaş, Serdar Çelebi:

# Dosya Demirbaş ji me tê veşartin

Abdullah Demirbaş bi giranî nexweş ketiye û niha tê têdawîkirin. Tevî vê nexweşiyê jî ew nayê azadkirin

**Amed (Rûdaw) -** Ev demek dirêj e ku Hikûmeta Tirkiyê behsa avêtina hinek gavên demokratîk û çareserkirina pirsgirêka kurd dike. Lê di heman demê de gelek siyasetmedarên kurd jî tên binçavkirin, di nava wan kesan de gelek kesên ku bi dengê gel hatine hilbijartin jî hene. Yek ji wan kesên girtî Serokê Belediya Sûrê ya Amedê, Abdullah Demirbaş e. Demirbaş di çarçoveya operasyona li hemberî DTP'ê de di 24'ê Kanûn a 2009'an de hat binçavkirin û ji hingê ve girtî ye.

Abdullah Demirbaş ku ji bo cara duyemîn weke Serokê Belediya Sûrê tê hilbijartin, di van rojan de bi mijarek din jî di rojevê de ye: Demirbaş bi nexweşiya Tromboza Derîn Ven (DVT) ketiye û di girtîgehê de nexweşiya wî lê giran bûye. Ji ber vê jî beriya heftekê ew rakirine Beşa Hemotolojiyê ya Nexweşxaneya Lêkolîna Fakulteya Tibê ya Zanîngeha Dicleyê (DU). Bizîşk diyar kir ku nexweşiya wî gihîştiye asta xeterê û lewre jî Demirbaş wê heta demekê din di bin çavdêriyê de bimîne û bizîşk dibêjin ku pêwîst e Demirbaş li derveyî girtîgehê bê dermankirin. Parêzerê Abdullah Demirbaş, Serdar Çelebî got ku wan daxwaza azadiya Demirbaş kiriye, lê daxwaza wan û raya giştî ji bo azadiya Demirbaş nehatiye qebûlkirin.


(Wêne: Diha)

**Di sala 2004'an de Abdullah Demirbaş bû Şaredarê Sûrê, lê ew ji aliyê dewletê bi tometa "cudaxwaziyê" ji ser karê wî hatibû dûrxistin. Piştî navberdana çend salan Demirbaş di Hilbijartinên Herêmî yên borî dîsa weke Şaredarê Sûrê hat hilbijartin û ew ji bo cara duyemîn ji karê wî hat dûrxistin.**

Abdullah Demirbaş û gelek kurdên din bi tometa ku endamên rêxistinek terorîst in hatine girtin. Lê dosyayên ku kesên girtî pê tên darizandin nayên ber destên parêzerên wan û tên veşartin. Di vê derbarê de parêzerê Demirbaş Serdar Çelebî gazindên xwe anî ziman: "Çareserkirina pirsgirêka kurd hê jî di rojeva Tirkiyê de heye. Lê belê girtin, binçavkirin û binpêkirina mafê mirovan berdewam e. Nakokiyek mezin hene. Tiştê heri girîng dosya birêz Demirbaş ji me re nayê vekirin. Dosya veşartî tê girtin û em wek parêzger naveroka dosya ku Demirbaş jê tê tawanbarkirin bi berfirehî nizanin. Ez dikarim bêjim di bin navê çareserkirina pirsgirêka kurd de tenê binçavkirin û îhlalkirina mafê mirovan tê kirin."

Ji ber nexweşiya Tromboza Derîn Ven di damarên xwînê de xwîn hişk û gizrek gizrekî dibe. Herî zêde di damarên ku xwînê ji laş kom dike de tê dîtin. Carnan jî perçeyên xwînê belav dibin û "emboli" pêk tê. Dema ku ev perçe ber bi kezebê ve diçe, dibe sedema xetimandina damaran. Bi taybetî di lingan de tê dîtin.

Ji bo azadkirina Abdullah Demirbaş niha gelek kes û sazî ketine nava hewldanan. Rêxistina Mafê Mirovan ya li Hemberî Komkujiyê Kurdocide Watch-ÇAK ku li Ewrûpayê xebatên xwe dimeşîne yek ji wan saziyan e. Kurdocide Watch-ÇAK û gelek rêxistinên navnetewî ji bo ku Şaredarê Surê Abdullah Demirbaş bê berdan, qampanya îmzayan dane destpêkirin.

# Sûriye partiyên kurdî bi cudaxwaziyê tohmetbar dike

Ebdulbaqî Yûsiv: "Li Rojavayê Kurdistanê mafê kurdan yê dewletbûn û serxwebûnê heye, lê niha rewş ne guncav e"

**Besam Mistefa**

Tevgera kurd li Rojavayê Kurdistanê di nîvê salên pênciyan a sedsala borî de hat damezrandin. Li gel ku slogana partiya yekem, Partiya Demokrata Kurdistanê-Sûriyê, ku piştre parçe bû û niha jimara hizbên kurdî gihaye nêzîkî 20'an, "rizgarkirin û yekirina Kurdistanê" bû, lê piştî parçebûnan di bernameyê ti hizbek siyasî ya kurdî de daxwaza cudabûn yan serxwebûna kurdan ji Sûriyê nehatiye çespandin.

Hikûmeta Sûriyê hinek tohmetên amade arasteyî her çalakvan yan siyasetvanekî kurd li Sûriyê dike ku yê dawî endamê polîtburoya partiya Çep a Kurd li Sûriyê Mehmud Sefo bû. Sekreterê Partiya Çep a Kurd li Sûriyê Mihemed Mûsa, bo Rûdawê ragihand: "Hikûmeta Sûriyê çalakvan û siyasetvanan bi hinek tohmetên amade, nemaze veqetandina parçeyek ji xaka Sûriyê û girêdana wê ya bi dewletek din ve gunehbar dike. Hevalê me Mehmud Sefo jî bi heman tohmetan hat tawanbarkirin. Ev tohmet bi berdewamî ji dema damezrandina tevgera siyasî ya kurd li Sûriyê dubarê dibin."


Mihemed Mûsa


Ebdulbaqî Yûsiv

Mihemed Mûsa, ku berî demekê hatibû girtin û hê doza wî li dadgehê xilas nebûye, wiha dirêjî bi axaftina xwe da: "Li dadgehê dozger gelek tohmet arasteyî min kirin. Bi taybetî veqetandina parçeyek ji xaka Sûriyê û girêdana wê ya bi dewletek din ve, yanî cudaxwazî. Armanca me ne cudabûna ji Sûriyê ye, lê belê bi rêyên aştiyane û demokratîk çareserkirina pirsgirêka kurd li Sûriyê ye."

Mûsa tohmeta cudabûnê red kir û wiha pêde çû: "Bi ti awayan di bernameyên hemû hizbên kurdên Sûriyê de behsa cudabûn û serxwebûnê nayê kirin. Lê ger li hember Baesî ti bibêjî ez kurd im, êdî bi awayekî yekser tu cudaxwazî. Ew hebûna me wek netew û gel înkar dike û di rastiyê de jî hikûmetê bo tunekirina kurdan li Sûriyê wek serjimariya awarte ya sala 1962 û proseya erebkirina navçeyên kurdî li Sûriyê, gelek kiryar kirin."

Hinek alî bi tenê daxwaza mafên çandî dikin û pirsgirêka kurdî li Sûriyê wek pirsgirêka hevwelatîbûnê dibînin. Di heman demê de vê dawiyê partiyekê daxwaza mafê otonomiyê bo navçeyên kurdî li Sûriyê kir. Endamê Polîtburoya Partiya Yekîtî ya Kurd li Sûriyê Ebdulbaqî Yûsiv, ku partiya wî di kongira xwe yê dawî, ya di dawiya 2009'an de, daxwaza mafê otonomiyê bo navçeyên kurdî li Sûriyê kiribû, bo Rûdawê ragihand: "Li Sûriyê her kesê ne ereb û bi taybetî jî kurd bi tohmeta parçekirina xaka Sûriyê tên tawanbarkirin. Lê nayê destnîşankirin ka gelo tohmetbar dixwazin parçeyê ku veqetînin bi kijan welatî ve girêbidin, lê dibe mebesta wan Herêma Başûrê Kurdistana be."

Ebdulbaqî Yûsiv pêdagiriyê li ser wê yekê kir ku tohmeta parçebûnê bi tenê dijî kurdan tê kirin û wiha domand: "Bi tehavî kurd rastî vê tohmetê tên. Berî ku em daxwaza otonomiyê jî bikin her ev tohmet hebû û çi kurdekî çalakvan di warê siyasî yan di çi warekî din de be, yekser bi parçekirina xaka Sûriyê dihat tawanbarkirin."

Ebdilbaqî Yûsiv da zanîn ku li Rojavayê Kurdistanê mafê kurdan yê dewletbûn û serxwebûnê heye, lê niha rewş ne guncav e û dibêje ku hinek rêxistinên kurd bi tenê daxwaza mafên çandî dikin û pirsa kurd wek a hevwelatîbûnê dibînin.

Li Silêmaniyê

# Li himber 4 zewacan 1 hevduberdan pêk tên

Di sala 2009’an de li Silêmaniyê li himberî 7396 girêbesten hevseriyê, 1728’ên hevberdanê hatin tomarkirin

**Rêkan Xefûr** Silêmanî

Derûn ewqasî ji îstatîkên telaqê ditirse ku ji niha ve hewl dide bingeha evîniyek bihêz li gel wî kesê ku di pêşerojê de dibe hevserê wê, deyne. Derûn Cebar (23) xwendekara zanîngehê ye û dibêje: “Rêya dûrketina ji berdanê tenê evînî ye. Ger jiyana hevserî pêk bînim, ezê bi rêya evîndariyê bikim ji ber evîndar rastî pirsgirêkên bi vî rengî nayên û bîra jiyanek din nakin.”

Berdan û hilweşîna malbatê bi rêya pirsgirêkên cûrbecûr hevseran ditirsîne û wan neçar dike ku li pêşiya dadwer peymana cudabûnê îmze bikin. Îstatîstîk didin zanîn ku rêjeya cudabûnê ber bi zêdebûnê ve diçe.

Hilweşîna malbata ku kedek pir mezin bo wê hat dayîn, Resûl Tofîq pir westand. Navbirî bi dilgiranî amaje bi wê yekê da ku ev du sal in hevsera wî dev jê berdaye û niha li gel mêrekî din dijî: “Min bi îxaneta hevseriyê tohmetbar kir.” Lê Resul bi tundî red dike ku wî xiyanet li jina xwe kiribe û dibêje: “Bi tenê bo cudabûnê min bi îxanetê tohmetbar kir, da ku li gel mêrekî dewlemend bizewice.”



Yên ku piştî bûyerên hevberdanê beriya her kesî zirarê dibînîn, zarok in

Li gor îstatîstîkên dadgeha rewşa kesayetî ya Silêmaniyê, di sala 2009’an de 7396 girêbestên hevseriyê hatine tomarkirin û li hember vêya jî 1728 bûyerên telaqê li heman dadgehê hatine tomarkirin.

Hinek jin sedemên cudabûnê wiha dibînin ku mêr daxwaza zarokan dikin an daxwaza kuran dikin û ev ne di destê jinan de ye. Loma mêr jina duyem tînin an jinên xwe yên pêşîn berdidin. Xatûn Qadirî (40) ku mêrê wê ew berdaye dibêje: “Min zarok ne dianîn, niha wî jinek din aniye û zarokên wî çêbûne.”

Mêr jî behsa vê pirsa civakî dikin û li gor wan pir caran jin bi xwe dibin sedemên cudabûnê. Daban Luqman ku bi tenê karîbû 5 salan li gel hevsera xwe jiyana hevseriyê bidomîne û di dawî de ji hev cuda bûn, behsa rewşa aborî ya xirab dike û dibêje: “Hevsera min daxwaza malek cuda û xaniyek serbixwe li min dikir, lê min nikarîbû daxwazên wê cîbicîh bikim û loma jî em ji hev cuda bûn.”

Kesên ku bi rêya evîndariyê jiyana hevjîniyê pêk anîne, dibêjin ew bi awayekî hêsantir pirsgirêkên xwe çareser dikin. Rewend Luqman (27) berî salekê jin anî û dibêje heta niha ti pirsgirêk çênebûne û jiyana xwe bi aramî derbas dikin. Rewend dibêje:”Ger pirsgirêkek derkeve pêş, em dikarin bi rêya diyalogê çareser bikin. Astê rewşenbîriya hevsera min heta cihekî baş bilind e û me bi rêya evînê hevdu aniye.”

Bi baweriya pispорê peywendiyên malbatî Çinar Umer, ji ber ku piraniya hevseran temenê wan biçûk e, di dema pirsgirêkan de nikarin diyalogê wek rêya çareseriyê hilbijêrin, pev diçin û di dawiyê de biryara berdanê didin.

# Jin newêrin nehêniyên xwe ji mêrên xwe re eşkere bikin

“Hinek nehênî hene ku xîreta mêran dilivîne. Loma behsa wan neyê kirin baştir e.”

**Behre Sedîq** Hewlêr

Hewar Silêman (20) di wê baweriyê de ye ku jin ditirsin hevserên wan wan şaş fam bikin. Loma newêrin behsa rabirdûya xwe ji wan re bikin, ji ber heye ev yek bibe sedemê cudabûnê: “Hinek nehênî hene divê jin ji hevserên xwe re bibêjin, lê hinek nehêniyên din hene ku xîreta mêran dilivîne. Loma behsa wan neyê kirin baştir e.”

Di jiyana herkesekî de nehênî hene, mirov dixwaze behsa nehêniyên xwe ji kesê herî nêzîk re eşkere bike. Lê jin ditirsin û van raz û nehêniyan di dilê xwe de veşartî dihêlin. Bi taybetî, jinên ku berê peywendiyên wan ên evîndarî hebûn, nikarin razên xwe ji mêrên xwe re eşkere bikin.

Li gor Tavgeh. R. (28), jiyana mirov bê nehênî nabe, nehêniyên wê bi xwe jî hene. Lê bi ti awayan nikarîbû behsa nehêniyên xwe ji mêrê xwe re bike: “Mêrê min qebûl nake ku ji bilî wî peywendiyên min li gel ti kesî hebin. Êdî ger nehêniyên xwe jê re eşkere bikim, heye ku bibe sedemê cudabûna me.”



Bi baweriya Tavgehê, pir caran civak rê nade ku ew behsa razên jiyana xwe ji hevserê xwe eşkere bike: “Dizanim ew van axaftinan qebûl nake, qebûlkirina axaftinên bi vî rengî bi astê rewşenbîriya mêran ve girêdayî ye. Civaka me mêrsalarî ye.” Civaknas Remziye Evdilwehab dide zanîn ku ji ber mêrsalariya civaka kurd herdem mêr serdest in: “Mêr hê ji zaroktiyê ve tê perwerdekirin ku mêr e û nabe bitirse. Lê li berevajî mêran, jin ji temenê zaroktiyê ve tê perwerdekirin ku divê ji mêran bitirse. Loma kesayetiya jinan lawaz e.”

Yek ji metirsiyên ku jin ji ber eşkerekirina nehêniyên xwe rastî tên, berdan e. Ayver Evdilxaliq (20) dibêje ku eşkerekirina nehêniyan dibe sedemê telaqdanê: “Ger jin nehêniyên xwe eşkere bikin, dibe ku nakokî û pirsgirêk derkevin holê, bibin sedemê jihevketina malbatê û hevberdanê.”

Tevî ku bi baweriya piraniya jinan “eşkerekirina razan” dibe sedemê derketina pirsgirêkan, lê Benaz Ebdulla (23) dibêje jinên ku nehêniyên xwe ji mêrên xwe vedişêrin ne rastgo ne: “Jin û mêr jiyana hevdu temam dikin û nabe aliyek razên xwe ji aliyê din veşêre.”

Gulîzar (35), berî ku şû bike, 7 salan peywendiyên evîndariyê li gel ciwanekî dirust kiribûn. Dayika xort nehişt herdu bigihin hev, loma xort jinek anî û Gulîzar jî li gel xortekî din zewicî. Lê Gulîzar bi awayekî sade hemû nehêniyên jiyana xwe ji mêrê xwe re eşkere dike. Gulîzar niha dayika 4 zarokan e û dibêje: “Min ji hevserê xwe re got ku ez ji derewan nefret dikim. Tiştekî li te venaşêrim, min ji xortekî hez dikir û bi dil û can me dixwest bibin mêr û jinên hev, lê nebû qismet. Hevserê min bi dilekî mezin ev axaftinên min qebûl kir.”

Jiyan Siyamend (25) herçiqasî berî hevseriyê nebûbû evîndar, lê dibêje ger nehêniyên min hebûna minê yekser behsa wan ji mêrê xwe re bikira: “Baweriya wî ya reha bi min heye loma dikarim behsa hertiştî li ba wî bikim.”

Tirsa jinan ji behskirina nehêniyên xwe li gelek jin bi du hoyan ve girêdayî ye.

Sedema yekem ev e ku mêr bi ra û nerîna xelet nêzîkî jinên xwe dibin û naxwazin guh bidin wan. Dibe ku jinik bi xwe bi awayekî xelet têbigihîje û rê nede xwe ku li ba mêrê xwe behs bike. Sedema duyem jî carna jin bi xwe ye. Pirê caran jin bi vî rengî bêbaweriya xwe li ba mêrê xwe tespît dike.

Delal û Zerîna ku fêrî kurdî dibin:

# Zimanê kurdî parçeyek ji nasnameya kurdan e!

Herçiqas gelek kurd xwedî li zimanê xwe yê zikmakî dernakevin jî, lê ciwanên evîndarê zimanê kurdî jî hene

**Evdile Koçer** Berlîn

Delal Akar (17) û Zerîn Ünlü (19) du keçikên kurd in ku li Berlînê dijîn. Weke gelek kesên ji nifşên nû ew jî mixabin nikarin bi zimanê xwe yê kurdî bipeyîvin; ji vê yekê gelekî şerm jî dikin. Lê ev demeke li Yek-Malê tevlî kursa kurdî dibin û dixwazin di demeke nêzîk de fêrî kurdî bibin.

### “Kesê/a ku zimanê civaka xwe nizanibe ne temam e”

Keça kurd Delal ku li Berlînê hatiye dinyayê ji Rûdawê re behs dike ku kesê/a ku zimanê civaka xwe nizanibe li gorî wê ne kesekî/ê temam e, “Lewma ez jî dixwazim ku zûka kurdî fêr bibim. Ziman jî parçeyek ji nasnameya civakê ye. Min gelekî şerm dikir ku bi kurdî nizanibûm. Mixabin dêbavê min jî nikarîbûn fêrî me bikin, lê niha derfet hene ku em fêr bibin, çima em vê derfetê bi kar neynin.


Zerîn Ünlü


Delal Akar

Dêbavê Delalê ji Elbîstana Kurdistana Bakur in. Ew dibêje ku ew di mala xwe de bêtir bi almanî dipeyîvin, “Lê em niha hêdî hêdî bi kurdî sohbet dikin. Jixwe dêbavê min jî gelekî kêfxweş in ku ez fêrî kurdî dibim û ew bi min serbilind in...”

Delal fêrbûna zimanê kurdî zor nabîne, “Ez dibêjim qey kurdî piçekî dişibe zimanê almanî û fransî. Li hêla din hisên min ên ber bi fêrbûna zimanan ve gelek xurt e… Lê ji bo min tişta herî giring ew e ku ez di pêşerojê de bikaribim zimanê kurdî fêrî zarokên xwe jî bikim; jixwe ji bo vê yekê ez fêrî kurdî dibim…”

Zerîn jî wekî Delalê dil berdayê fêrbûna kurdî. Ji me re behs dike ku wekî kurdekê fêrbûn û axaftina kurdî gelekî girîng dibîne, “Li gorî fikra min nasnameya neteweyekî ya herî mezin pêşî ziman e û ji wir dest pê dike. Pir kêfxweş im ku niha min kurseke kurdî ya wisa peyda kir. Ya rastî ez pêşî dixwazim bi rêya ziman bêtir li ser çand û hunera civaka xwe haydar bibim….”

Zerîna ku ji Erzirom a Kurdistanê ye bi taybetî balê dikişîne ser ku divê pêşî keç û jinên kurd fêrî kurdî bibin, “Ji ber ku jinên kurd esasê malbatê ne û zarokan xwedî dikin. Heke bi kurdî zarokên xwe mezin nekin wê civak jî ber bi ziman û çandeke din ve biherike. Em ji malbatên xwe fêrî kurdî nebûn, heke em jî zimanê kurdî fêrî zarokên xwe nekin mixabin wê ev ziman bimire û biçe. Kurdên ku behsa gelek tiştên qerase dikin divê pêşî zimanê xwe fêr bibin û dû re derkevin pêşiya civakê....”

Dêbavê Zerînê jî ji keça xwe şanaz in ku wisa berê xwe daye ser fêrbûna kurdî. Bi vî awayî cihê wê çêtir di nav malê de jî çêbûye, “Ez dixwazim ku her dem bi malbata xwe re bi kurdî sohbet bikim. Ji xwe dema ku kurdek ji min dipirse, ‘Tu kurd î, lê bi kurdî nizanî!’, pir zora min diçe, ez hingê wekî Delalê şerm dikim û serê min dikeve binê erdê. Lewma ez dixwazim zûka bi kurdiya xwe ya xweşik derkevim nava heval û dostan…”

### Bang li kurdên Berlînê

Delal û Zerîn li Yek-Malê ji mamoste Ciwan Tengezar fêrî kurdî dibin. Kêfxweşiya her gotineke kurdî yekser dide rûyê wan jî. Û bangî hemû kurdên Berlînê dikin ku divê kurdî fêr bibin û bi kurdî bijîn. Helbet mamosteyê wan Ciwan jî pir kêfxweş dibe ku tovê gotinên kurdî li Berlînê wisa direşîne.

# 50 hezar kurd li Îmaratên Erebî dijîn

Bi taybetî piştî hilweşîna rejîma Saddam Hûsên gelek kurdan berê xwe dane welatên Kendavê

**Merîwan Feyzulla Saleyî**

**Dubey (Rûdaw) -** Piştî heriftina rijîma Saddam Hûsên, gelek kurd berê xwe didin welatên Kendavê û hijmara wan li wir her zêde dibe. Civata Hevkariya Kendavê (GCC) ji şeş welatan pêk tê: Erebistana Siûdiyê, Îmarat, Kûwêt, Qeter, Behraîn û Oman.

Hejmara herî zêde ya kurdan li Îmaratê û bi taybet li bajarê Dubey dijîn. Naze Ebdulla ya 24 salî, tevî malbata xwe li Dubey dijîn û pir kêfa wê ji vî bajarî re tê: “Jiyana li Dubey pir xweş e.” Dayika Naze, Miryem Selah a 45 salî di warê ciwankariyê de kar dike: “Dubey bajarekî sekûler e, mirov dikare meyê vexwe û bi dilê xwe cilikan li xwe bike.” Ebdullayê bavê Nazê jî dibêje: “Hikûmeta Dubey pir hevkariya penaber û şîrketên biyanî dike. Bac nînin û hikûmet destêwerdanê di karûbaran de nake.”


Kurdên li Îmaratên Erebî di ahengên netewî weke Newrozê dighijin hev

Piştî 2003’an, hijmareke bazirganên kurd jî berê xwe dan Dubey û tê texmînkirin ku ofîsên bêtirî 600 şîrketên kurdî li Dubey hene. Bazirgan, Xalid Berzincî dibêje ku Dubey navendeke bazirganiyê ye: “Piraniya bazirganên kurd kel û pelan ji Dubey, yan bi rêya wê digihînin Îraq û Herêma Kurdistanê.” Kurdên Dubey di boneyên kur-dî de, festîval û ahengan saz dikin. Ebdila Silêman ê 32 salî got: “Her sal, em ahenga Newroz û sersala kurdî li Dubey saz dikin.” Niha hijmareke restorantên navdar ên kurdan yên weke “Hewlêr” û “Er-bîl” li Dubey hatine vekirin ku gelek kes bi taybetî kurd û xelkên din, serdana wan dikin.

Merwe Cebar a 28 salî, xelka Kerkûkê ye. Ev 20 sal in ew û malbata xwe li Qeterê dijîn. Merwe digel hevjînê xwe, Raşid Hecerî ku xelkê Qeterê ye li xwaringeha Hewlêrê bûn. Hevjînê Merweyê pir ji xwarinên kurdî hez dike: “Xwarina kurdî têkilî xwarinên farisî, rrebî û tirkî ye, lê bi tameke kurdî.” Ew herdu dixwazin xwaringeheke kurdî li bajarê Dohe ya paytexta Qeter vekin: “Em dixwazin xelk zêdetir kultur û xwarinên kurdî binasin.”

Şahnişîna Behraîn ku hejmara xelkên wê yek milyon kes e, herwiha hijmareke kêm a kurdan jî li wir dijîn. Azernûş Husên a 26 salî xelka bajarê Mihabad ê Rojhilatê Kurdistanê ye. Ew li Behrên ji dayik bûye û wê Kurdistan nedîtiye: “Kêfxweş im ku hêlên asimanî yên Behrînê diçin Hewlêrê û agahdar im jî ku Hewlêr pir xweşik e.”

Lane Mesûd xelka Hewlêrê ye û li Brîtanya jiyaye, wiha got: “Ev weletekî bê bac, azad û modern e. Dema keçên azad ên weke min li Kurdistanê jî hatin qebûlkirin, ezê vegerim Hewlêrê. Lê niha li wir jina azad wek “qehpik” bi nav dikin.”

Hejmara penaberên kurd ên li Kendavê ne diyar e, ji ber ku ew weke Îraqî, Sûrî yan Îranî tên naskirin. Lê hejmara herî zêde ya kurdan li Îmaratê dijîn. Ramî Qamişlokî yê 30 salî ku kurdekî Rojavayê Kurdistanê ye û karmendê bankê ye li mîrgeha Şariqe, wiha dibêje: “Li gor hinek kesan, hijmara kurdên Îmaratê zêdeyî 50 hezar kesî ye. Lê ew ne wek kurd, lê wek Sûrî tên naskirin.”



Mîraz Bezar

# MIN DÎT dikeve sînemayên Almanya

Fîlmê nû yê Derhêner Mîraz Bezar heta niha çendîn xelatên nevnetewî wergirtine




Dîmenek ji fîlmê MIN DÎT

Nurettin Akad

Fîlmê derhêner Mîraz Bezar "MIN DÎT" ku kuştinek JITEM'ê bi awayek dramatîk derdixe perda spî, gelekî nav û deng da û bû sedema gelek nîqaşan. Fîlm, ku di qada navnetewî de 8 xelat stendin, di 2'ê Nîsanê de kete vîzyonê û di rojên pêş de wê di sînemayên Ewrûpî, Kurdistan û Tirkiye'yê de were nîşandan.

## Çîroka fîlm

Di rêya Amed û Batmanê de, di şevek tarî ya meha Gulan'ê de jiyana Gulîstan'a deh salî û birayê wê Firad, bi awayekî dilşewat diguhere. Bavê wan ê rojnamevan û dayika wan li pêş çavê wan tê kuştin. Li dawiyê Gulîstan, Firad û xwîşka wan a şeş mehî Dilovan dimîne. Dilovan di nav destên diya xwe de hêna digirî. Xizmên yekane yê zarokan xaltîka wan Yekbûn e. Lê piştî demek kin ku xaltîka wan jî winda dibe, Gulîstan û Firad bi tevahî bi tena serê xwe dimînin. Ji bê peretiyê zarok neçar dimînin tiştên malê difroşin. Gava ku pereyê wan ji bo dayîna kirê jî namîne, dest bi jiyanek li kolanên Amedê dikin. Ji jiyana wan a berê tenê kasetek çîrokê ku diya wan bi dengê xwe tomar kiriye, maye.

## Agahiyên fîlm

Fîlmê ku 35 mm (Sinemaskop) hatiye kişandin, 102 deqe dirêj e û bi zimanê kurdî û tirkî ye. Fîlm, di gelek festîvalên fîlmên navnetewî de hate nîşandan û gelek xelat wergirtin. Fîlm yekemîn car di salona Aspendos a AKM'ê de ku fîlmên pêşbirkê lê dihatin nîşandan, hat pêşandan. Bi tevî ku kapasiteya salonê 817 kes bûn, di salonê de nêzî 900 kes amade bûn. Piştî pêşandanê fîlmê 'min dît' di Festîvala Fîlm a 46'emîn a Antalya Altın Portakal'ê de xelata taybet a 'Behlül Dal Jüri' wergirt. Fîlmê kurdî ku di festîvala fîlm a Altin Portakal'ê de hat nîşandan, li gel vê xelatê her wiha fîlm xelatên din ên wek: International Film Festival San Sebastian: Gaztea Youth Award, International Film Festival Ghent: Special Jury Prize, International Filmfest Hamburg: Young Talent Award wergirtin.

## Çêkirina fîlm

Derhêner û çêkerê film Miraz Bezar, diyar kir ku wî film bi pereyê xwe, wek projeyek serbixwe dest pê kiriye. Bezar derbarê şert û mercên çêkirina film de wiha got: 'Min bi pereyê xwe dest pê kir. Fatîh Akin di qonaxa post produksiyonê de beşdar bû. Min wek projeyek serbixwe dest pê kir. Li devera ku pereyê me nema, pêşî diya min ket dewrê û neçar ma xaniyê xwe bifroşe. Xalê min dayîna otelê qebûl kir, ez bawerim hîn jî dide. Xwîşka min maseyên pevxistinê temîn kir. Ji ber ku 10 sal bû min Fatîh Akin nas dikir, ez lê geriyam û gava hat Berlîn'ê min xwest çavekî bavêje film. Temaşe kir û eciband. Wî got: 'de rabe em vî fîlmî biqedînin'. Bi kurtahî post prodîksiyon bi fîrma xwe piştgirî da..."

## Guftûgoyên li ser film

Fîlm, li Tirkiye û Kurdistan'ê bû mijara nîqaşên girîng. Di pêşandana film a Antalya Altin Portakal'ê de hin kesan bi hinceta ku leşkerên tirk xirap dixîne û stranên kurdî tê de ne, salon terikandibûn. Lewma çapemeniya tirk ev yek nepixandibû, lê bi tevî hemû nîqaşan mirov dikare bêje film bi rastî jî reaksiyonek gelek erênî stendiye. Nîqaşên derbarê film de jî, li ser xala ku cara yekemîn e li Tirkiyê derbarê kiryarên şerê qirêj de fîlmek wiha wêrek tê nîşandan, dimeşe. Wer xuyaye ku gelek kes ji ber ku di film de rastî ew çend dijwar hatiye nîşandan, ji qebûlkirinê direvin. Di rojnameyên tirkan de nivîskaran derbarê film de nivîsandin. Her wiha gelek rojnameyên kurdistanî û rojhilata navîn jî bi erênî qala film kirin.

***Mîraz Bezar kî ye?***

*Mîraz Bezar di sala 1971'ê de hatiye dinê. Eslê xwe kurd e. Di sala 1980'yî de tevî malbata xwe koçî Almanya kir. Fîlmên wî yên metraj-kin ên bi navê 'Bêrîvan', 'Dûrî' û 'Freiwild' di festîvalên navneteweyî de hatin nîşandan û xelat wergirtin. Fîlma 'Min Dît' fîlma yekemîn a metraj dirêj a derhêner Mîraz Bezar e.*



Dîmenek ji fîlmê MIN DÎT

## 'MIN DIT' ji aliyê Mîtos Fîlm ve tê belavkirin

Fîlmê derhêner Mîraz Bezar 'Min Dît' ji aliyê fîrma belavkirinê 'Mîtos Fîlm' ve tê belavkirin. Fîrma bi tevahî kurdî ye ango saziyek kurdî ye û rêveberê fîrmayê Mehmet Aktaş e. Produktor û rojnamevan Mehmet Aktaş, derbarê fîrma Mîtos film de daxuyanî da rojnameya me Rûdawê.




Aktaş derbarê saziyê û armanca wê de wiha axivî:

"Fîrma mîtos'ê fîrmayek kurdî ye ku li Ewropayê bi awayekî profesyonel fîlman çê dike û belav dike. Heta niha di fîrmayê de derhênerên kurd Bahman Ghobadî û Huner Salîm, her wiha gelek derhênerên girîng ên kurd dixebitin. Armanca me ya herî girîng ew e ku em bi rêya sînemayê kurdan bi cîhanê bidin nasandin. Her wiha armancek me ya din jî ew e ku di heman demê de em çanda sînemayê jî di nav kurdan de belav bikin".

Li gorî Mehmet Aktaş, fîlma 'Min Dît' piştî fîlmên Yilmaz Guney, fîlmê herî girîng e ku li Bakurê Kurdistan'ê hatiye kişandin. Aktaş, bi taybetî jî di derbarê vî fîlmî de wiha got:

"Ji bo film di qada cîhanê de bê nasandin, Mitos Film, xebatek berfireh meşand. Ji 22'ê Nîsanê û pê ve fîlma 'Min Dît' wê li 35 bajarên Almanya derkeve sînemayan. Cara yekemîn wê film li bajarên mezin ên wek Berlin , Hamburg , Munih, Koln û Essen'ê di sînemayên mezin de bê nîşandan."

Rêveberê Mîtos Fîlm Mehmet Aktaş, ji herkesî xwest ku kurd bêhtir ji fîlmên kurdî re baldar bin û wiha berdewam kir:

"Em pêşniyaz dikin ku herkesê di mijara çanda kurdî, sînemaya kurdî de eleqedar be, li vî fîlmî binêrin û ji hevalên xwe re pêşniyaz bikin. Eger heftiya destpêkê eleqeya ji film re xurt be, hingî xwediyên sînemayê jî film di sînemayê de digirin û zû ranakin. Hêviya min ew e ku kurd, baldarî û eleqeya ji konserên muzîka kurdî re nîşan didin ji fîlmên kurdî re jî nîşan bidin. Fîlmê 'Min Dît' di bin şert û mercên zehmet de hate çêkirin. Lê belê em hîna nizanin ka wê fîlm mesrefa xwe derxîne yan na."

# "Em dixwazin bibin layîqê navê Botanê!"

Li Sêrtê, li Navenda Çanda Botanê "Mihemed Arif Cizîrî û Meryem Xanên" nû tên gihandin

**Evdile Koçer** Sêrt

Navenda Çanda Botanê ku ev bi salan e li Sêrtê dixwaze dewlemendiya çand û hunera Botanê derxîne ser rûyê civakê, ji milekî ve li dijî asîmilasyona tirkîtiyê şagirtên ciwan ên kurdewar digihîne, ji aliyê din ve jî her dem xwe ji serdegirtinên nû yên polîsan re hazir dike.

Di van serdegirtinên polîsan de her dem çend xebatkarên wan têne binçavkirin û dû re jî hinek ji wan tên girtin. Tenê 'sûc'ê wan ew e ku dixwazin stûnên çand û hunera kurdî li her derê Sêrtê daçikînin.



(Wêne: Rûdaw)

Li Navenda Çanda Botan li Sêrtê perwerdeya muzîkê tê dayîn

## Perwerdeya şano, mûzîk, govend û enstrûmentalan didin ciwanan

Ji bo vê armancê perwerdeya şano, muzîk, govend û enstrûmentalan didin ciwan û zarokan; li taxan roj û şevên taybet amade dikin; mohra xwe li rojên taybet ên wek Newroz, Sersal, 1'ê Gulanê, 8'ê Adarê û hwd. dixin.

Dema ku min li Sêrtê serî li Navenda Çanda Botanê da, stranbêj Xwejîn Botan di odeyekê de dersên tembûrê didan çend ciwanan. Stranbêj Botan ji bo pênc deqeyan navber da dersê û ji min re behs kir ku hedefa wan ew e ku huner û fikra kurdayetiyê bireşînin nava rihê ciwanan, "Em dixwazin li vir M. Arif Cizîrî, Meyremxan û hunermendên nû derxînin, loma gelek girîng dibînim ku mirov hêj di biçûkahiyê de li ser vê hunera zarok û ciwanan bisekine..."

Şagirtekî ciwan bi heyecan ji min re xeyala xwe wisa vedibêje, "Ez dixwazim rojekê stranek min jî û klîbek min jî di MMC û Roj TV de derkeve; ji bo vê yekê ez gelekî xwe dihêşînim..."

Li odeyek din çend ciwan haziriya çalakiyek nû dikirin. Gazincên wan ên herî mezin ji qata jor yanî ji avahiya partiya BDP'ê bû, "Ji bo ku bi kurdî biaxivin û gohê xwe bidin hunerê jî em her dem wan rexne dikin; her çiqas ku rexneyên me di cih de jî bibînin, lê axaftina tirkî li ba siyasetmedaran mixabin bûye wek nexweşiyekê..."

## Şano dikare meseleya kurd jî derxîne ser rûyê dinyayê

Şanoger Îzet Oktay jî li hêwanek ji hêwanên Komeleya Gundên Mişarê dersên şanoyê fêrî nêzîkî 20 ciwanên Sêrtê dike. Şanogerên nû di provayên xwe de hemû hunera xwe bi kêfxweşî wek hunermendên profesyonel nîşan dikin. Mamosteyê wan Îzet ji hunera şagirtên xwe gelekî kêfxweş e, "Ev zarok bi lîstîkek şanoyê dikarin hemû meseleya kurd derxînin ser rûyê dinyayê, lê helbet ji vê re jî perwerde lazim e, sebir lazim e, domdarî lazim e, da ku em hemû bi hev re bigihîjin armanca xwe..."

## Rondik ji çavê temaşevanan barandin

Şanogerên Navenda Çanda Botanê, di roja komkujiya Helebçeyê de bi şanoyek xwe ya li ser Helebçeyê rondik ji çavên gelek temaşevanan barandibûn. Hem jî şanoya bi kurdî! Çima ez dibêjim bi kurdî? Ji ber ku hê jî hinek şanogerên kurd li Bakur bi tirkî lîztikên xwe pêşkêş dikin.

Xebatkarên Navenda Çandê dixwazin ku bi kurdiya xwe, bi çand û hunera xwe, layîqî navê Botanê bibin. Dixwazin ku Miradko û Meyrem Xanên nû bigihînin, dixwazin ku bi xebatên xwe mohra xwe li hunera kurdî bixin.

# Yekemîn albûma Mizgîn Tahir tomar bû

**Dilbixwîn Dara** Bonn

Mizgîn Tahir hunermendeke kurd e, xwediya dengê opera ye. Kurd bi giştî û kurdên Şamê bi taybetî wê baş nas dikin û gelekî jî ji dengê wê hez dikin. Di van demên dawiyê de bi konsert û tevlêbûna şahiyên cuda yên netewî û milî, deng daye.

Her çiqasî wê di sala 2003'an de dest bi strangotinê kiribe jî, lê di demek ne pir dirêj de, di nava hunera kurdî de cih girt. Dengê wê ew bilind kir, ji wê bêhtir her kes Mizgîn Tahir bi dengê wê yê operayî nas dike. Mizgîn Tahir ji Şamê dest bi hunerê kir.

Destpêka wê li gel hunermendê naskirî û hema hema jibîrkirî Reşîd Sofî bû. Reşîd Sofî li seranserê Suriyê û li gelek welatên erebî ûdvanekî navdar e. Ew bi xwe ji Rojavayê Kurdistanê ji bajarê Kobanê ye, lê belê di nava belengaziyê de dijî, êdî kêm kes hene li wî dipirsin û daxwazên wî yên jiyanê pêk tînin. Ew ji Mizgîn Tahir re bû piştek xurt. Mizgîn bi xwe dibêje ku Reşîd Sofî gelekî alîkariya wê kir û rê nîşanî wê daye.



Mizgîn Tahir

Mizgîn Tahir ku bi xwe ji Rojavayê Kurdisanê bajarê Hesîçeyê ye, klasîka kurdî bi dengê xwe yê operayê û bi şêweyekî akademîk dibêje. Ew girêdanek gelekî xurt di navbera klasîkên kurdî û operayê de dibîne. Opera ji bo wê hesta herî bilind ya stranbêjiyê ye. Dema ku klasîkên kurdî dixe nava hunera operayê, ew bêhtir bi xweşiya stranên kurdî dihese.

Mizgîn Tahir, albumek ji 6 stranan amade kiriye. Ew album li bajarê Serê Kaniyê hatiye tomarki- rin. Albûm ji stranên evînê û romantîk pêk tê. Ew li bendê ye ku di demek nêzîk de bê belavkirin. Ew albûma yekemîn a Mizîgn Ta-hir e. Ji ber vê yekê ew bi eşqek mezin li benda derketina albumê ye.

**Mizgîn Tahir kî ye?**

*Mizgîn Tahir di sala 1976'an de li Rojavayê Kurdistanê li bajarê Hesîçe ji dayîk bûye. Sala 1999'an li Şamê Enstîtuya Hunerên Şanoyê xwendiye û di sala 2005'an de jî der çûye.*

# Jinek amerîkî çanda kurdî bi cîhanê dide nasandin



Dîmenek ji dema kişandina fîlm de

**Gever (Rûdaw) –** Jinek amerîkî fîlmek dokumenter li ser çanda kurdî berhem aniye û yek ji wan fîlman e ku biryar e di festîvala Cannes de bê pêşandan.

Jina amerîkî ya berhemhênera fîlmên dokumenter Jessica Healthy fîlmek belgeyî berhem aniye ku behsa Başûrê Kurdistanê dike. Jessica di derbarê fîlmê xwe de wiha axivî: "Ev fîlm di 11'ê Nîsan a 2010'an de li Dubey tê pêşkêşkirin û dûre jî di 12'ê Nîsan a 2010'an de li Fransa tê nîşandan."

Healthy amaje bi wê yekê da ku ev fîlmê dokumenter 52 deqîqe ye û Bêrîvan Vigorix karê derhênanê kiriye. Biryar e ev fîlm di festîvala sînema ya Cannes de bê nîşandan.

TAVA HEYVÊ

## Repertuar

**Hekîm Sefkan**
hekimsefkan@hotmail.com



Encama hemû gotin û karên ku di cih û demên xwe de dibin, erênî ye. Em rojane van gotinan bikartînin "di cihê xwe de bû", "ne cihê wê gotinê bû". Ev ji her tiştî re weha ye, lê li vir ez dixwazim pirsgirêka repertuarên stranan bi we re parve bikim.

Pir, kêm, hemû kes bextewar ji salonên şahî û pîrozbahiyên kurdan derdikevin. Piraniya caran gazinên guhdaran yek in "ma ew çi stran bûn...?" Piştî wê hevokên cuda tên, wek: "em di xew re birin. Ma em hatibûn dawetê?". Li gor herdu beşan jî stranbêj şaş e, li gor min jî stranbêj û organizator şaş in.

Û pirsgirêk ev e ku dema stranbêjekî/e me karê xwe dike, tiştê herî pêwîst ji bîr dike: Rêza stranan, repertuar. Kijan stran, li ku û kinga tê gotin. Dema em li CD'yekê guhdar dikin, em dibînin ku her ew stranên tê de, li ser dikê jî tên strandin, li TV yan jî her ew in. Li vir em çend nimûneyan bigrin destê xwe, pêşî şaşiyên stranbêjan: Mirov dikare pir bi hêsanî straneke gelerî, ya 10-15 deqeyan dirêj dike, di CD de bistrê, lê katastrofe, dema ew stran li ser dikê li pêşiya bi deh hezaran mirov bê xwendin. Mirov dikare stranan li ser şehîdan bêje, lê ne ku bi wê stranê mirovan vexwendeyi dîlanê bike, yan jî li dawetan wan bêje.

Yek dikare albûmeke ji stran û mûzîka guhdarkirinê ya giran û têr dagre, lê ew komkujiyeke ku bê û li mîting yan jî festivalekê li ser dikê bê pêşkêşkirin. Di dema guhdarkirina wê albûmê de, giyana mirov bêdeng konsetreyê mûzik û nermayê dibe, lê li deverek qerebalix û tije hêrs, giyana mirov tiştekî din dixwaze, loma giranî û hunera wê berhemê di nava wê hêrs û tevliheviyê de li ber lingan diçe, nirxê xwe wenda dike.

Ev û gelek pîvanên din ên çewt, bêhesabiya stranbêj li ber çavan radixe ku dibe sedemên nerazîbûna guhdaran. Bêhesabî ev e ku repertuarê ser dikê ji yê albûmê, yê albûmê ji yê ekranê cuda nake. Di nava repertuarekê bi xwe de jî tevlihevî derdikeve. Dema ku repertuarek tê amadekirin, divê berî her tiştî bê çiqasî ji hev nêzîk be divê hewqasî jî ji hev dûr be. Û ev yek tevlihevî û bêhesabiyê çêdike, nîşana nehêsaniya repertuarê jî ew e. Divê armanca wê diyar be, ji kê re û ji kinga re hatiye amadekirin, ya dawetan e, ya şahiyan e, ya guhdarkirinê ye, ya ..., ev divê ji hev nêzîk bin. Ritim, meqam û aranje bi serê xwe pirsgirêk in, du stranên hicaz (yan jî meqameki din) li pey hev, yan jî sisê di albûmekê de guh diwestîne. Ritmên wek hev albûmê bê tam dikin, aranja wek hev stranê xav dike, ev jî divê ji hev dûr bin.

Min li jor hinekî guneh avêtibû ser organizasyonan ji, ew jî weha ye ku nizanin kijan stranbêj, ya rast repertuarê kijan stranbêj yan jî hunermend li gorî çalakiya wan e.

Kin û kurt, kinga, li ku çi tê gotin, yek ji pisgirêkên herî giran ên stranbêjên kurd in.



Lokman Ayebe:

# Karekterê romana min antî-karekter e

Romana Lokman Ayebe ya duyemîn li ser çîroka şervanekî azadiyê ku du re bûye îtîrafkar, ava bûye. Ev îtîrafkar piştî demekê ji kiryarên xwe poşman dibe, dixwaze li welat û gelê xwe vegere û gelê wî wî bibexşîne. Lê îtîrafkar ne êmin e ka gelo gelê wî wê wî bibexşîne yan na. Ew baweriya xwe bi bextê gelê xwe tîne û dixwaze gelê wî deriyekî jê re veke. Li ser "Gava Heyatê" em bi Lokman Ayebe re axivîn.



**Lokman Ayebe**

**Li welatekî ku her "gav" a wê bi mirinê hatiye şûştin tu behsa "heyat" û "gava heyatê" dikî. Çima "heyat" û "Gava Heyatê"?**

Li welatekî ku jiyana mirov lê hatiye herimandin û hişmendiya civakê serûber dagîr bûye, mirov ê qala heyatê neke û ew ê qala çi bike!? Gelek kes ji min dipirsin ku çima ne "Gava jiyanê" û çima "Gava Heyatê". Her çiqas her du peyv hemwate xuya bin jî, jiyan li gorî heyatê hîn bêtir pozîtîf û henûn xuya ye. Lê belê rûyê peyva heyatê bi însên sar tê, zalim xuya ye û xofekê li cem mirov çêdike. Ji ber wê jî ya ku em kurd dijîn ji jiyana pozîtîf wêdetir, heyata rûsar û zalim e.

**Gava Heyatê ji pênç çîrokan pêk hatiye. Di her çîrokê de karekterê te xwedî karekterekî cuda ye; geh şervan e , geh îtîfarkar û geh jî evîndar. Karekterê karekterê te çi ye?**

Karekterê romanê, di rû û bedenekî de xwediyê gellek karekteran e. Ew bi xwe jî nizane ku ew xwedî kesayatekeçawa ye, di nav ewqas karekterî de ew jî di derûniya xwe de dikeve lêpersînê û tim ji xwe dipirse ku, ez kî me lê ew jî nizane ew kî ye. Ew ne ji aliyê fizyolojîk û ne jî ji aliyê hişmendî ve ne karekterekî îdeal e; dijberî wê antî-karekter e. Bi tu kiryarê xwe li dilê însên runane. Karekter karekterekî pir rûye, di her çîrokê de ji cihê ku lê dijî bigire û hetanî navê wî jî tê guhertin, ku ew guhertinan di şertên ew tê de dijî xwe li ser wî ferz dike û ev jî ji bo tevna romanê dibe bingeh.

**Di beşa dawî de karekterê te ji xwe dipirse: "Gelo ez bi dê û bav bûma û ez bi xwîşk û bira bûma, gelo ez ê dîsa weha li ber pêlên vê jiyana har,geh bi vê hêlê û geh jî bi wê hêlê biçûma?" Tu çi bersivê didî vê pirsê?**

Dayîna vê pirsê ne pêkan e; ji ber ku heger karekter bi dê û bav bûya, dibe ku berê romanê bi tûmî bi aliyekî din ve biçûya. Lê ez bawer nakim ku li ser vî karekterî ev guhertin pêk bihata. Jixwe pirsîna vê pirsê xwexapandina karekter e ku pê xwestiye gunehê xwe sivik bike. Ew li kuçeyan, li ser destê ap û amojinan mezin nebûye, hetanî bûye xortê temam jî, zirdê û bavê xwe wek dê û bavê xwe dizane. Ji ber ku havênê (heyvanê) wî nebaş e, şîrê wî heram e, di çi şertî de bûya ew bawer im Tasar Mancêlî wê dîsa heman Tasar Mancêlî bûya.

**Di monologên Tasêr de em dibînin ku tu pir dixwazî Tasar ji hêla gel ve bê bexşandin û pê re dest bi gavek nû ya heyatê bike. Çima tu dixwazî îtîrafkarek were bexşandin?**

Ji ber ku ew îtîrafkar ji kirinên xwe poşman bûye, ku dema wek îtîrafkar dixebite û qesasiyê dike jî, tim poşman e û di dawiya "Çîroka Ewên" de dihere cem serfermandarê xwe û dibêje, ez nema bi we re dixebitim. Ji ber ku ew bi bextê welatiyên xwe bawer e û xwe diavêje bextê wan, ji ber ku em wek civak kesê/a xwe diavêje bextê me, em bi şûn de venagerînin. Heger em dagerînin ser jiyana rasteqîn divê em wek civak xwedî bîr û hişmendî bin lê divê em ne rikdar bin, bi şertê ku poşmanî lê çêbûbe dive em bikaribin hevûdû bibexşînin. Ku Tasar Mancêlî têra xwe poşam bûye û ez bawer im ji ber vêya jî bexşandinê heq dike.

**Gava Heyatê bi xewnekê diqede. Tasar Mancêlî di xewnê de tê bexşandin. Çima ne di rastiyê de lê di xewnê de tê bexşandin?**

Xewn di vir de dikeve şûna rastiyê, ev xewn mirêka rastiyê ye. Ev xewn bi qasî xewn e ewqasî jî xeyal e. Xeyal e, ji ber ku xeyala civakê vedibêje. Bi Tasar re civak jî ji nava zîpik û giregira tavan, ji nava qelaç û beyarbanan, ji nava kelem, qurincok, kerbeş, û striyan derdikeve û dikeve nava rewşekê ku ro lê vedikeve. Dengê şalûr û bilbilan tê, her celeb kulîlk li der dora wan dibişkivin û çawa ku hemû dikevin dest hev û dîlanê digirin, taliyê jî ev xewnexeyal bi bêhna azadiyê bi dawî dibe. Ev xewn ne tenê Tasar ji temama ferdên civakê û ji nava heyata wan a şerpeze derdixe, wan dixe nava jiyanek bêhn azad.

**Rola edebiyatê ew e ku bikaribe civakê biguhere. Bi ya te ev romana te wê bikaribe rola xwe pêk bîne û vê xewnê veguherîne rastiyê?**

Vê romanê pişta xwe spartiye civaka me kurdan û çavkaniya xwe ji civakê girtiye. Mixabin di civaka me de gellek kesên dişibin Tasar Mancêlî hene. Ferqa Tasar Mancêlî ji yên rasteqîn ew e ku ew di dawiya çîroka xwe de li xwe û li civaka xwe vedigere. Berî ku ev xewn pêk bê divê ewil çîrokek vegera wan hebe. Dil vêya dixwaze lê jiyana pratîk wê bikaribe vêya bimehînê, ew jî wê di gavek heyata civaka me de derkeve pêşberî me.

**Hevpeyvîn: Şengül Oğur**




**Lokman Ayebe** *di 1981'ê de li Dêrikê çêbû. Li Zanîngeha Dîcleyê Beşa Hesabgeriyê qedand. Di 2004'an de romana wî ya yekem "Jar lê Sermest" weşiya. "Gava Heyatê" romana wî ya duyem e.*

Kevneserokê HADEP'ê Murat Bozlak

# "Bi guhertina destûrê pirsa kurd çareser nabe"

**Köln - (Rûdaw) -** Murat Bozlak yek ji damezrênerê Partiya Gel a demokratîk - HADEP'ê (1994-2003) bû û demek dirêj serokatiya wê partiyê kir. Ev çend salan Bozlak ji qada siyaseta kurdî winda bûye. Di hevpeyvîna li gel Rûdawê de Murat Bozlak kurd hişyar kirin ku "xwe nexapînin û nekevin dû xeyalên badilhewa"

**We demek dirêj wek serokê HADEP'ê kar kir. Li gora we ji 2002 heta 2010'an çi guhertin di qada siyasî de çêbûne?**

Di naveroka pêşketinên qada siyasî de divê mirov li tabloya kurdî binere. Di tekoşîna me ya siyasî ya 10 salan de cudatiyek berbiçav heye. Ev cudabûn ne guhertinên bingehîn, lê guhertinên ku tenê ji bo nezera çavan e. Di dema borî de ji bo axaftina kurdî em dihatin darizandin, yan jî ji bo ku me di otobosan de li stranên kurdî guhdarî dikir, me şeş meh cezayê hepsê digirt. Niha nermahiyek heye. Ya din jî ev e ku berî 10 salan şert û mercên nîqaşkirin û pêşdebirina tekoşîna kurd a siyasî giran bûn. Kuştinên kûjer nenas hebûn. Em mecbûr bûn tekoşînek dijwar û bi xeter bimeşînin. Kesên ku dildarên pirsgirêka kurd bûn, mecbûr bûn canê xwe deynin holê. Helbet niha di vî warî de nermbûnek heye. Berê gotina kurdî û gotina "ez kurd im" jî dibû sedema girtin û zîndanê, lê niha ev gotin pir bi rehetî tên gotin. Kanalek televizyonê ku bi kurdî weşanê dike vebû, bi vê kanala televizyonê înkarkirina tunebûna zimanê kurdî ji holê rabû. Ev televizyon encama pêşketina tekoşînê ye û ev jî qebûlkirina zimanê kurdî ye. Bi vê re nasnama kurd hat qebûlkirin, her çiqasî di zagonan de nehatibe qebûlkirin jî, lê dewletê bi vekirina kanalek kurdî hebûna ziman û nasnama kudî qebûl kiriye.

Lê durd dîsa li beramber helwestên ne demokratîk dimînin. Wek nimûne 1500 endamên BDP di hindur de ne. Ev hejmarek pir mezin e û helwestek dûrî demokrasiyê ye. Ev tê wateya rêlibergirtin û astengkirina siyasetê.



Kevneserokê HADEP'ê Murat Bozlak

## Serdestiya dewletê didome

Di çareserkirina pirsgirêka kurd de tu guhertin tune ye. Serdestiya dewletê didome û di bingeha pirsgirêkê de sazûmaniya serdestiya dewletê heye. Niha guhertina makezagonê di rojevê de ye. Lê birêz serkomar dibêje ku "Min bi temamê serokên partî û dezgehan re hevdîtin kir. Min di van hevdîtinan de ev dît ku di xalên bingehîn yên makezagonê de cudayetî di navbera serokên partiyan de tune ye, li vajayî wê hemahengek xurt heye". Ev çi ye? Ev e ku temamê serokên partî û dezgehan xwedî li serdestiya dewletê derdikevin. Heta ev serdestiya yekdeng hebe, kes nikare di çareserkirina pirsa kurd de bigihê xalekê. Lê helbet gava mirov bêhnçikandî be û dûv re bêhnekê bistîne, mirov xweziya xwe tîne û rewşê hinekî baştir dibîne.

**Gava em li polîtîkaya derve dinerin, em dibînin ku di dema HADEP'ê de kesên wek Angela Merkel û Obama bi siyasetmedarên kurd re rûnedinîştin. Lê niha bi BDP re hevdîtinan dikin, hûn vê çawa dinirxînin?**

Divê mirov vê yekê tenê bi serokdewletan ve girê nede. Di dema HADEP'ê de me bi temamê partiyên siyasî û serokên wan re hevdîtin dikirin. Di derbarê pirsa kurd de xwedîlêderketinek ji aliyê serokên partiyên desthilatdar ve hebû. Lê niha jêdûrketinek heye. Berê me karîbû rasterast bi nûnerên hikûmet û dezgehan re hevdîtin pêk baniya û bawerî bi rastiya pirsa kurd jî dianîn. Lê niha li vajayî wê demê jêdûrketinek heye, terikandin heye û heta cî bi cî êrîş jî hene. Li gora min Obama pêşketinek mezin kir. Ji bo ku wekîlên kurd di meclîsê de hebûn, serekerkan û serdarên artêşê nedihatin meclîsê. Serokwezîr destê wekîlên kurd nedihejand. Piştî ku Obama destê Ahmet Türk hejand û rêz jê e girt, serokwezîr jî dest pê kir pê re hevdîtinê bike. Hevdîtina Obama ya bi wekîlên kurd re pir girîng bû. Lê mixabin li gora dema buhurî, li Ewrûpayê dijberiyek li hember kurdan tê meşandin.

## Nêzîkbûna welatên Ewrûpî neyînî hatiye guhertin

**Di dema dawî de girtina ser dezgehên kurdî, girtina Zubeyir Aydar û Remzî Kartal pêk hat...**

Rast e, van hevalên me ji berê de li Ewrûpayê bi gelek partiyên siyasî û kesayetan re hevdîtin dikirin. Kesekî dijberî nedikir. Lê çi bû ku ketin vê rewşê û raserî rewşa sûcdariyê hatin? Di vê wateyê de helwesta welatên Ewrûpî hatiye guhertin. Ne bi erênî lê neyînî. Amerîka ji berê de ev helwesta xwe diparast, ji berê de siyaseta me nediparast. Têkiliya wan û kurdên başûr xweş bû, lê siyaseta me nediecibandin.

**Birêz Bozlak, di rojevê de makzagonek heye. Li gora we di rêdana pirsa kurd de derî tên vekirin yan jî tên girtin?**

Di bingeha xwe de têkiliya makezagonê û pirsa kurd bi hevre tune ye. AKP ne partiyek hayela û ji rêzê ye. Divê mirov AKP hinekî binase û bi partiyên din re tevlihev neke. AKP di asta bingeha îslama siyasî de ye. Ji 1960'î ve li Tirkiyê dest bi sazûmaniya bingeha cemeat û terîqetan kirin. Bi Partiya Milli Nizamê re cara yekem birêz Erbakan daket qada siyasetê. Piştre Partiya Selametê û pê re jî AKP xala dawîn danî. Di dema buhurî de xebatek pir bi bingeh hat meşandin. Rêxistinek bi navê Dibistanên Îmam Xetîb, federasyon û Komela Akincilar hat hûnandin. Ji bo di pêşerojê de bibin desthilatdar, li şûna fakulteyên tibê, ew dişandin fakulteyên siyasî û hiqûqê da ku di siyasetê de xwedî ray û gotin bin. Heta ketina nava artêşê jî ji xwe re kiribûn armanc. Ango; pêvajoyek dûr û dirêj dan ber xwe da ku desthilatdarên pêşerojê amade bikin.

> "Piştî ku Obama destê Ahmet Türk hejand û rêz jê e girt, serokwezîr jî dest pê kir pê re hevdîtinê bike. Hevdîtina Obama ya bi wekîlên kurd re pir girîng bû."

> "Hê jî hiş û fikar nehatiye guhertin. Lê helbet gava mirov bêhnçikandî be û dûv re bêhnekê bistîne, mirov xweziya xwe tîne û rewşê hinekî baştir dibîne."

> "Di bingeha xwe de têkiliya makezagonê û pirsa kurd bi hevre tune ye."

## AKP îslamperestiya siyasî ye

Piştî ku AKP di meclîsê de bû desthilatdar, îslamperestên siyasî pirdengiya meclîsê bidestxistin. Desthilatdarî tenê bi pirdengiya meclîsê pêk nayê. Dadgeha Zagona Bingehîn navendek ji ya desthilatdariya Tirkiyê ye. Meqamê serkomariyê navendek ji ya desthilatdariyê ye. YOK navendek e, artêş navendek jê ye. Dezgehên şêwr û dadê dîsa navendek ji navendên desthilatdariyê ne. Evan di hola siyasî de piranî girtin destê xwe. Serkomarî bi dest xistin. Helbet gava ev bi dest xistin, xwediyên sîstema heyî li dij derdikevin. Aliyên Kemalîst li hember wan helwestê digrin.

Tenê dadmendî li hember desthilatdariya AKP li ber xwe dide. Serokwezîr di axaftinên xwe de vê bi eşkereyî tîne zimên. Tenê navenda dadmendiya dijber maye. Di guhertina makezagonê de tê xwestin ku navenda dadmendiya dijber ji holê rakin. Di bingeha xwe de nêzîkbûnek ku pirsa kurd çareser bike tune ye. Li pey perçînkirina desthilatdariya xwe ne, ne li pey çareserkirina pirsa kurd in. Berendamên YE'yê ne, bi hinek guhertinên piçûk dixwazin boyaxekê li ser pirsgikê bixin. Em xwe nexapînin û nekevin dû xeyalên badilhewa.

**Birêz Bozlak, gelo li Tirkiyê dadmendî serbixwe ye?**

Nexêr. Ev dadmendî ne pir bê teref e. Dadmendiyek wisa ye ku ji bo axaftina zimanê kurdî bi hezaran kurd dixe zindanan. Em li beramber dadmendiyek bi vî awayî ne. Ez dixwazim bêjim ku ji bo berjewendiyên xwe dixwazin makezagonê biguherin. Şerê desthilatdariya siyasî dimeşînin. Em nikarin bêjin ku wê guhertina vê makezagonê deriyên girîng ji kurdan re veke.

## Divê kurd bibin yek

**Birêz Bozlak, li gora we divê kurd çi bikin?**

Pirsek gelek girîng e, divê em çi bikin? Divê em gotin û xeyalên wek "wê hikûmet, Îran, Îraq, Ewrûpa çi bide me û ji me re çi bike" ji ser û guhê xwe bavêjin. Divê dawî li psîkolojiya rawestandinê bê. Divê em li dû tiştên xelet nebezin. Hezar sal in em dixwazin, lê heta îro jî kesekî tiştek nedaye me. Mafên netewî-demokratîk nayên naskirin, hê jî kurd wek milet bi nasnameya xwe nayên qebûlkirin. Kurd li ser xaka xwe nikarin bi zimanê xwe perwerdeyê bibînin, di xaka xwe de nefî û koçber in. Wek biyazî û koleyan zilmê dibînin û hê jî tên kuştin.

Divê kurd çi bikin? Helbet divê kurd bibin yek. Divê kurd bi yekîtiyê hêza xwe bikin yek, ne ku dijberiya hevdu bikin û ji hev dûr bikevin. Divê kurd li şûna pevçûnê li hev bên, ji hev hez bikin. Gava kurd bi partiyên xwe, bi dezgehên xwe, bi weşangeriya xwe, bi hunermendên xwe, bi kurtî bi her aliyên xwe bibin yek, aha wê gavê wê pirsgirêka kurd çareser bibe. Li gora min rêdan û çareseriya herî maqûl jî ev e.

**Birêz Bozlak, gelo hûn difikirin dîsa vegerin qada siyasetê?**

(Dikene) niha plan û projeyek bi vî awayî tune ye. Lê di pêşerojê de çi dibe em nizanin.

**Gotinek ku hûn di dawiyê de dixwazin bêjin heye?**

Belê heye. Ji bo ku hûn wek rojnameyek kurdî û rojnamevanek kurd bi tirkî hevpeyvînê bi min re dikin, ez we rexne dikim.

**Birêz Bozlak, hûn bi kurdî nizanin ku ez bi kurdî bi we re biaxivim..**

(Dikene) Ew jî rast e, lê ez hinekî hîn bûme. Heta hevpeyvînek din ezê baş hîn bibim, wê gavê emê hevpeyvîna xwe bi kurdî bikin.

**Hevpeyvîn: Medya Deniz**

## Çapemeniya cîhanê

LE FIGARO

### Erdoğan: Îsrail gefan li aştiya herêmê dike

Serokwezîrê tirk li dijî navtêdana dewleta Îsrailê dengê xwe bilind kir. Di navbera Tirkiyê û Îsrailê deng bilind dibin. Her kes li bendê bû ku serdana Serokwezîrê Tirkiyê Recep Teyyib Erdoğan a Parîsê balê bikşinê ser têkiliyên Enqere û Parîsê derbarê endambûna Tirkiyê ya di Yekîtiya Ewrûpa de, lê belê nîkaşên di navbera Tirkiyê û Îsraîlê mijar guhert. Erdoğan berî xwarina bi Nicolas Sarkozy re ji çapemeniyê re daxuyand ku Îsrail li Rojhilata Navîn de gefeke sereke ye. Serokwezîrê tirk herwiha daxuyand ku eger dewletek li Filîstînê yan jî li Xezzayê hêzeke nehevgirtî û çekên fosfor bi kar bîne, em nikarin jê re bêjin aferîn.

LE MONDE

### Tirkiye û Îran nêzî hev dibin

Gelo Berlîn û Parîs berpirsyarê têkiliyên navbera Îran û Tirkiyê ne? Yan jî em bi awayekî din bêjin; redkirina endametiya Tirkiyê ya Yekitiya Ewrûpa ji aliyê Almanya û Fransa ve dibe ku bibe sedema radîkalbûna Enqere di mijara Îranê de? Ev daxuyanî ji bo diltêrbûnê pir sivik dimîne. Lê di naveroka xwe de hinek rastiyê jî dihewîne. Yên ku dixwazin Tirkiyê ji endametiya Yekîtiya Ewrûpa dûr bixin, wê ji aliyê polîtîkê ve berdêlê jî bidin. Em dixwazin berevajiya vê bifikirin: Endamekî Yekitiya Ewrûpa li Rojhilata Navîn (Tirkiye) wê xwedî îtîbarekî mezin be û bandora Ewrûpa û hêza wê jî bilindtir bike.

LA REPUBBLICA

### Tiştê ku Obama dikarîbû qezenc bike, qezenc kir

Serokê Amerîka Barak Obama û Serokê Rûsya Dmitri Medvedev roja çarşemê li Pragê, peymana hindik kirina çekên nûklerî îmze kirin. Ji bo kêmkirina metirsiya ji jenosîda nûklerî, li Pragê gavek mezin hate avêtin. Ev jî gavekî bi hêvî ye. 1500 bombeyên atomî yên ku di depoyên Rûsya û Amerîka de ne, têrî perçe û xerakirina rojgêra me ye. Lê belê peymana ku Moskow û Washingtonê îmze kirin, di naveroka xwe de rastiyeke hêsan vedişêre: Her çiqas bombe kêm bin, wê xetera bikaranîna wan jî kêm bibe. Berhevdana peymana ku li Pragê hate îmzekirin û tiştên ku Barack Obama heta niha çêkirin, dibe ku kêm xuya bibe. Lê belê Obama li Pragê tiştê ku karibe qezenc bike, qezenc kir û tiştê ku karibû pêşkêş bike jî, pêşkêş kir.

Partiyên Holandî:

# Zewaca biyaniyan asteng bikin!

**Amsterdam (Rûdaw) -** Biyaniyên ku li Ewrûpayê dijîn, heta ji wan tê hevserên xwe ji welatê xwe dibijêrin û bi rêya zewacê wan tînin Ewrûpayê. Tê ragihandin ku zewacên bi vî awayî zêdetir bûne û hejmara biyaniyên ku bi rêya zewacê tên Ewrûpayê gihaye astek bilind.

Bi taybet li Almanya û Holandayê bûyerên zewaca ji welêt li pêş in. Balkêş e ku zarokên li Ewrûpayê çêdibin û bi çanda Ewrûpî mezin dibin, gelek caran demekî dirêj bi her re namînin û zûtir hevdu berdidin. Lê kesên ku ji welêt hatine Ewrûpayê û hê jî di bin bandora çanda welat û miletê xwe de ne, zû bi zû dawî li zewaca xwe nayînin û bextewartir in.



Di sala 2009'an de serlêdanên ji bo zewacê ji sedî 40 zêde bûn

Piştî Almanya, welatê ku herî zêde bi rêya zewacê biyanî lê zêde dibin Holanda ye. Tê gotin ku par 29 hezar biyanî serî li dezgehên Holandî dane ku karibin bi rêya zewacê bên wî welatî. Vê yekê bala siyasetmedarên holandî jî kişandiye, heta ku siyasetmedarên rastgir li dijî derdikevin û hewl didin ku astengiyan ji zewacê re derdixin.

Di vê derbarê de wekîlê Partiya Gel a ji bo Azadî û Demokrasiyê Paul de Krom, ecêbmayîna xwe venaşêre û dibêje: "Ji dêvla ku pirsgirêk piçûktir bibe, mezintir dibe" û bi şik û goman li zewaca kesên biyanî dinere. Ji aliyê din ve Serokê Partiya Azadî (PVV) Geert Wilders, diwxaze ku sînorek ji zewaca biyaniyan re bê danîn û herweha deriyên Holandayê ji kesên misilman re bên girtin. Li gora lêkolînên herî dawî, rayedarên dezgehên fermî dibêjin ku di sala 2009'an de ji sedî 70'ên serlêdanên zewacê hatine pejirandin û ji sedî 40'ên serlêdanên zewcê jî zêdetir bûne.

# Hezaran penaberên kurd tên paşveşandin

## Felah Mistefa: Me ji bo wergirtina penaxwazan ti lihevhatinek nehênî mohr nekiriye

**Hêmin Baban Rehîm** Hewlêr

Federasyona Penaberên Îraqê dibêje ku Hikûmeta Îraqê û ya Herêma Kurdistanê jî, bi şertê ku welatên Ewrûpî li deynên xwe bibihurin, ji bo dersînorkirina penaberên kurd lihevhatinên nehênî di gel çend welatên Ewrûpî çêkirine. Lê Hikûmeta Kurdistanê wê yekê red dike.

Sekreterê Federasyona Penaberên Îraqê li Swîsra, Ehmed Elî ragihand ku şandek federasyona wan di gel Komîteya Mafên Mirovan a Parlamena Kurdistanê civiyaye. Navborî bo Rûdawê got: "Armanca civîna me li ser rawestandina dersînorkirina penaberan, girtina asmanê Kurdistanê di rûyê wan firokeyên ku penaberên dersînorkirî tînin Kurdistanê û rawestandina wan binpêkirinên ku li Kurdistanê û derve li hemberî penaberan tên kirin bû." Wî eşkere jî kir ku "çendîn belge hene îsbat dikin ku lihevhatinên nehênî û eşkere yên Hikûmeta Herêma Kurdistanê û Hikûmeta Îraqê ji bo vegerandina penaberan hatine kirin." Dîsan got: "Berpirsê Beşa Şandina Penaberan li Wezareta Derve ya Swîsra Michael Morf, ji me re got ku berpirsên Hikûmeta Herêma Kurdistanê lampa kesk ji me re vêxist ku em bi zor penaberan bişînin." Dîsan got: "Emê wan belgenameyan bidin Parlamena Kurdistanê."

Li gor zanyariyên Federasyona Penaberên Îraqê, hijmara penaxwazên Îraqî ku piştî 2003'an bi zorê hatine dersînorkirin, gihaye 4300 kesan ku bêtiriya wan kurd in. Serokê Komîteya Mafên Mirovan li Parlamena Kurdistanê, Salar Mehmûd bo Rûdawê got: "Em li dijî vegerandina bi zor a penaberan in. Me daxwaz jî ji Hikûmeta Kurdistanê kiriye ku ew nehêlin penaber bi zorê bên zivirandin."

Heftiya borî hat ragihandin ku di vê mehê de 70 penaberên kurd wê bi rêya firokexaneya Silêmaniyê bên vegerandin. Lê piştî berpirsên wê firokexaneyê gotin ku ewê rê nedin ew firokeya penaberan tîne dakeve, niha dersînorkirina wan penaxwazan hatiye rawestandin. Çavkaniyek haydar ji Firokexaneya Silêmaniyê ku ne xwest navê wî bê belavkirin, bo Rûdawê got:"Di dema şandina penaberan de firokexane tê haydarkirin."

Amarên ne fermî nîşan didin ku bêtirî 3 milyon penaberên Îraqî ku beşek ji wan kurd in, li derve hene. Sekreterê Federasyona Penaberên Îraqî li Swîsra, dakokiyê li ser wê yekê dike ku bi sedema şandina wan bi zorê, çendîn penaberên kurd xwe kuştine yan xwe şewitandine. Ehmed Elî got: "Penaberên ku hatine zivirandin, bê proje û kar in, projeyek hikûmetê jî ji bo wan tune."

Biryardera Komîteya Mafên Mirovan li Parlamena Kurdistanê, Befrîn Osman dibêje: "Federasyonê ji me re got belge di destên wan de hene ku Hikûmeta Herêma Kurdistanê û Hikûmeta Navendî jî di gel hikûmetên welatên derve li hev hatine ku li hember nehiştin yan kêmkirina deynên wan ên li ser Îraqê, ew razîne ku penaberan bi zorê bişînin Îraqê. Eger ew wan belgenameyan ji me re bînin, emê dûvçûnek hûr lê bikin."

Lê Berpirsê Fermangeha Peywendiyên Derve yê Hikûmeta Herêma Kurdistanê Felah Mistefa, wan axaftinan red dike û bi daxuyaniyekê ji bo Rûdawê got: "Ji bo dersînorkirina penaberan li gel ti welatan lihevhatinek me nîne."

### 6. Pêşangeha Pirtûkên Kurdî li Vienna pêk tê

Li paytexta Nemsa, Vienna 6. Pêşangeha Pirtûkên Kurdî tê li dar xistin. Pêşangeh roja 12'ê Nîsanê dest pê dike û heta 18'î heman mehê dom dike. Di wê çalakiya kulturî de ku ji aliyê KOMKAR'ê ve tê li dar xistin û çendîn sazî û komeleyên kurdî jî piştevaniyê lê dikin, ji bilî nîşandana pirtûkan, wê herwiha danûstan, semînar, konferans, fîlm, mûzîk û hin mijarên din jî ji aliyê çendîn nivîskar û rojnamevanan ve bên pêşkêş kirin. Pêşangeha ku wê çendîn kesatiyên kurd û biyanî jî weke mêvanên hurmetê tê de beşdar bibin, wê li Arthaberplatz 18, 1100 Wien bê saz kirin.



Girtiyên Guantánamo têne parvekirin:

# Kurdek bû para Bulgaristanê

Kurdê ji Rojavayê Kurdistanê bi tometa endametiya Al-Qaîda 8 salan di girtîgehê de ma

**Sofiya -** Hikûmeta Bulgaristanê mafê penaberiyê daye girtiyekî Guantánamo ku kurdekî ji Rojavayê Kurdistanê ye. Navê wî Mesum Ebde Mihemed û temenê wî 38 sal e. Tê çaverêkirin ku di dema du hefteyên din de Mesum Ebde Mihemed bigihe Sofiya ya paytexta Bulgaristanê.

Li gor malpera 'Novinite' ya bulgarî, Mesum di Çileya 2002'an de li gel sê ereban li ser sînorê navbera Pakistan û Afganistanê hatiye girtin û di dema binçavkirinê de ti nasname û belgeyeke fermî pê re tune bûye.

Mesum Ebde bi tometa ku endamê rêxistina Al-Qaîda ye û li çiyayên Toraborî yên Afganistanê şer kiriye, derdora 8 sal di girtîgeha Guantánamo de bûye. Lê Mesum Ebde diyar kiriye ku wî di jiyana xwe de tenê 7 gule teqandine û wêya jî di demekê de bûye ku wî li Sûriyê kursa fêrkirinê qedandiye da ku bibe polîs. Herwiha tekezê dike ku ew bi şaşî hatiye girtin û li cihê kesekî din hatiye girtin ku navê wî jî Bîlal e.

Girtiyên Guantánamo ku ji aliyê Bulgaristanê wek penaber tên wergirtin, dibin xwedî hemû mafek. Lê berpirsyarên Bulgaristanê tekez dikin, ew kesekî wek penaber wernagirin ku gumana wêya jê were kirin ku dibe metirsî bo ser ewlehiya netewî ya Bulgaristanê.

Serokê DYA'yê Barak Obama di dema propagandaya xwe ya hilbijartinê de soz dabû ku girtîgeha Guantánamo ku dikeve ser tixûbê Kûba bigre.


Li Guantanamo bêtirî 600 kes ji 40 welatan girtî ne

**Girtîgeha Guantánamo**

*Piştî êrişên 11'ê Îlon a 2001'ê li dijî Navenda Bazirganiya Cîhanê - WTC li New York û Wezareta Parastinê li Washingtonê, serokê wê demê yê DYA'yê George W. Bush "şerê li dijî terorê" îlan kir. Ji bo kesên ku bi pêkanîna bûyerên terorê hatin tewanbarkirin, Hikûmeta DYA'yê girtîgehek li baregeha leşkerên amerîkî, li Guantánamo Bay, li başûrê Kûbayê ava kir. Ji sala 2002'an ve kesên ku bi endambûna Al-Qaîda û Talîbanan tên tewanbarkirin, li wir tên girtin û ew ji mafên girtiyên şer bêpar in. Bi bûyerên şîdet û biçûkirina girtiyan, girtîgeha Guantánamo bû synonîma kiryarên nemirovane li dijî girtiyan.*

Li Kirgizîstanê raperîn:

# Opozisyonê serkomar qewitand

**Bîşkek -** Li Kirgizistan'ê li dijî hukûmetê gel herikî kolanan û avahiyên hûkumetê bi dest xist. Xwepêşandêran hin wezîr dîl girtin û lewma di navbêra xwepêşandêr û polîsan de pevçûn derket. Di şer û pevçûnên ku 8 saetan dom kir de 75 kesî jiyana xwe ji dest da, ji hezarî zêdetir kes jî birîndar bû. Li gorî daxûyaniyên mûxalefetê hejmara miriyan nêzî 100 ye. Xwepêşandan 3 rojan berdewam kir. Serokkomarê Kirgizistan'ê Kurmanbek Bakiyev neçar ma paytexta welêt terk bike.

Xwepêşandan herikîn kolanan, artêş jî bû hevalbendên wan, parlemento hate fesihkirin û rêveberiyeke demkî hate damezirandin.

Piştî vê raperînê jineke 60 salî ya bi navê Roza Otunbayeva hate ser desthilatê. Tê gotin ku ev raperîn ji aliyê Otunbayeva bi xwe ve hatiye meşandin. Roza Otunbayeva, wezareta karê derve jî di nav de, di wezîfeyên weke sefîra Washington û London'ê de cîh girtibû û di heman demê de beriya niha bi 5 salan di şoreşa lale de jî roleke girîng lîstibû ku bi qûlipandina serokdewlet Akayev bi encam bibû.



Piştî demek kurt hêzên ewlekariyê jî tevlî opozisyonê bûn

## Rûsya ji hikûmeta nû xwest: Baregehên DYA'yê bigrin!

Serokwezîra nû ya Kirgizîstan'ê Roza Otunbayeva ji Rûsya'yê alîkarî xwest. Rûsya jî hikûmeta nû nas kir û ji hikûmeta nû xwest ku baregehên Amerîka yên li welêt bigirin. Rayedarekî payeblind ê rûs ku nexwest navê wî were zanîn, li Prag'ê daxuyaniyek da rojnamevanan û got, serokdewletê berê yê welêt Kurmanbek Bakiyev soz dabû ku ew ê baregehên Amerîka yên li welatê xwe bigirin, lê Bakiyev ev soz bi cîh neanîbû. Rayedarê rûs got ku lewma ew ê vê yekê ji serokên nû yên Kirgizîstanê bixwazin.

## Bakiyev bang li cîhanê kir

Serokdewletê ji desthilatdariyê hatiye xistin, Kurmanbek Bakiyev, diyar kir ku Kirgizîstan li ber karesatekê ye û banga alîkariyê li civata navneteweyî kir. Bakiyev di daxuyaniya xwe ya ji bo ajansa kirgiz a bi navê "24kg" got ku ji bo bandorê li rewşê bike ew ji her cûre derfetî bê par e. Kurmanbek Bakiyev qebûl kir ku artêş û hêzên polîs ketine bin kontrola hikûmeta demkî ya nû û îdîa kir ku rêveberiya nû wê nikaribe nîzamê biparêze. Hikûmeta demkî ji bo bîranîna kesên di pevçûnên 7'ê Nîsanê de jiyana xwe ji dest dane, 9-10'ê Nîsanê weke roja şînê îlan kir û dûre zemên elektrîkê û germahiyê betal kir

Ji aliyê din ve li paytexta welêt piştî şer û pevçûnên dijwar, jiyan dîsa vegûhezî rewşeke normal. Li paytext Bîşkekê ku dikan û bazar hatine vekirin, maxazeyên mezin, restorant û banka ji ber sedemên ewlekariyê heta çend rojan hîn jî girtî bûn.

## Li Hindistanê hînbûn ji bo hemûyan e

Li Hindistanê yasayeke nû derketiye û li gor wê yasayê, hemû zarokên wî welatî yên ji temenê şeş heta çarde salî, mafê hînbûna bêberamber heye. Serokwezîrê Hindistanê Manmohan Singh got ku hikûmeta wî soz dide ku ew ê şansê hînbûnê ji hemû zarokan re misoger bike. Şîrovekar jî diyar dikin ku ji bo zarokên Hindistanê ev yasa xaleke dîrokî ye. Nûnera Rêxistina Navnetewî ya Çavdêrîkirina Zarokan (UNICEF), Karin Halsaf jî pesnê hewldanê da.

Beriya demekê jî Banka Navnetewî ragihandibû ku bi buhayê bêtirî milyarek Dolar ew ê du projeyên hînbûnê li Hindistanê cîbicî bike. Wê rêxistina diyar kir ku hejmara zarokên ku ji salên 2003 heta 2009'an li xwendingehan hatine qeydkirin, ji 75 milyonan gihaye 192 milyonan û hejmara zarokên ku li derveyî xwandingehan dimînin ji 25 milyonan daketiye 8 milyon zarokan.

## Balafira Serokê Polonya tevî şanda polonî hate xwarê

Şemiya borî (10.04.2010) balafira Serokê Polonya Lech Kaczynski li nêzî bajarê Smolensk li rojavayê Rûsyayê hate xwarê û tevî Lech Kaczynski û hevjîna wî, şanda pê re ya 88 kesî û 8 karkerên balafirê jiyana xwe ji dest dan. Di nava şanda tevî Lesh Kaczynski de gelek siyasetmedarên naskîrî û sereke yên Polonyayê jî hebûn.

Şanda Polonya ji bo merasimek bîranîna leşkerên polonî ku beriya 70 salan ji aliyê hezên taybet yên rûsî li bajarê Katyn li Rûsyayê hatibûn kuştin, bi rê de bû. Wekî sedema hilweşana balafirê, rewşa hewayê ya nebaş hate nîşandan. Kaczynski wekî rexnegirekî tund yê Wladimir Putin dihat naskirin.

## Amerîka û Rûsya peymana kêmkirina çekên atomî mohr kirin

Serokê DYA'yê Barak Oba-ma û Serokê Rûsya Dmitrî Medvedev pêncşema borî li paytexta Komara Çekê, Pragê peymana "Start2" ya ji bo kêmkirina çekên atomî yên welatên xwe îmze kirin.

Beriya 19 salan, ango di sala 1991'an bi navê "Start1" di navbera Amerîka û Rûsyayê de lihevhatinek hatibû çêkirin û di 5'ê Kanûn a 2009'an dema wê peymanê qediya bû. Niha jî peymana "Start2" ku di 8'ê Nîsan a 2010'an li paytexta Komara Çekê, Pragê hatiye îmzekirin, wê bikeve ciyê lihevhatina berê û li gor vê peymana nû wê Moskow û Washington hejmara çekên atomê bi rêjeya ji sedî 74 daxînin ku bibe 1550 serikên atomî li cem her yekî ji wan welatan.

# Cildê kovara Kurmancî newe ra çap bîy



Cildê çewres hûmaranê kovara Kurmancî




**Îstanbul (Rûdaw) -** Çewres hûmarê kovara Kurmancî ke "rojnameyê taybetî yê Enstîtuyê Kurdkî yê Parîsî yê ke persanê lehçeya kurmanckî ser o" yê, têreyra û bi yew ferhengekê kurdkî-tirkî-franskî-îngilîzkî amey çapkerdiş.

Goreyê malumatê ke Weşanxaneyê Avesta keyepelê xo de dano "Kovara Kurmancî"ya ke sey weşanêka ziwanzanîya kurdkî ya tewr muhîme ya îlmî qebul bena, 1128 rîpelan ra yenê pê, ebadê A4 de, heşt rîpelî rengîn, kaxita sipîye ser o ameya çapkerdiş û bi çermê sîya û bordoyî ameya cildkerdiş.

Serekê Enstîtuyê Kurdkî yê Parîsî Kendal Nezan vateyo verên yê cildê kovare de seba roşinbîranê kurdan, seba heme kurdanê ke ziwan ra hes kenê, persanê serekeyan wina nîşan dano: "Dewlemendîya ziwanê kurdkî senî muhafeze bibo û bireso neslê ameyeyî? Kurdî senî şênî bi fekanê cîya-cîyayan, nuştiş yan qiseykerdiş de yewbînan ra hîna hol fehm bikerê? Kurdkî senî şêna dewlemend bibo, hîs û meremê kurdanê modern û wendeyan yê seserra vîstine zî pê îfade bibê? Xebata Kurmancî xo sey destpêkê cewabdayîşê nê persan vînena: arêdayîşê fekan, zelalkerdişê rastnuştişê ziwanî, viraştişê çekuyanê neweyan seba waranê cuya ewroyine."

Kendal Nezan, vateyê verênî de dano zanayîş ke xebatêka winasî ganî karê akademîya ziwanî yê dewletêka kurdan bo. Vano, "La kes nêzano ke dewletêka neteweyî yê kurdan key ronîyena û hetanî o wext rewşa kurmanckî senî bena. Coka tayê roşinbîrê kurdan dorê Enstîtuyê Kurdkî yê Parîsî de kom bîy û qerar da ke serre de di rey, hergu rey seba hewteyêk, kom bibê û persanê kurmanckî ser o bigureyê. Na xebate de zî eserê verênî, bitaybetî yê Mîr Celadet û Kamiran Bedirxanî û yê Kurdîstanê Başûrî ra zî îstîfade bikerê. Goreyê îmkananê xo ra, ma waşt kesê ke persa ziwanî ra eleqedar benê, yan fekê mintiqaya xo hol zanê yan zî pisporîyêka înan a taybete esta, seba nê kombîyayîşan venga înan bidin û heme mintiqayanê ke kurmanckî tede qisey bena ra merdimî beşdarê nê kombîyayîşan bibê. Kesê ke beşdarê nê kombîyayîşan bîyê, çend welatanê Ewropa ra yenê û pêro pêsero des ziwananê xerîban nas kenê."

Her di kombîyayîşê Kurmancî serra 1987 de paytextê Katalonya şaristanê Barselona de virazîyay. Badê ke çend kombîyayîşî Bruksel, Berlîn, Loland (Danîmarka), Dihok û Parîs de virazîyay, dima, seba ke zafaneyê beşdaran Swêd de mendêne, qerar dîya ke êdî heme kombîyayîşî şeş aşman ra reyêk Swêd de, girawa Biskos Arno de bivirazîyê. Cildê kovara Kurmancî netîceyê xebata vîst serran a.

# Laleşê Nûranî restore beno


Zîyareta êzidîyan Laleşê Nûranî qezaya Şêxanî yê Kurdîstanê Başûrî de ya

**Şêxan (Rûdaw) -** Goreyê beyanatê ke qaymeqamê qezaya Şêxanî Heso Nermoyî da, projeyê restorekerdişê Laleşê Nûranî demeyêko nêzdî de dest pêkeno. Seba restorasyonî 850 hezar dolar butçe ameya abirnayîş.

Qaymeqamê Şêxanî Heso Nermoyî va, hukmatê Kurdîstanê Başûrî roja yewê nîsane de yew şîrketa almanan reyde peymana restorekerdiş û hîrakerdişê cayê Laleşê Nûranî îmza kerde. Seba restorasyonî 850 hezar dolar pere ameyo abirnayîş û restorasyon do serrêk de temam bibo.

Badê ke restorasyon temam bibo û Laleşê Nûranî turîzmê zîyaretkerdoxan rê abibo, qerar ameyo girewtiş ke butçeyêka mengane zî seba Laleşî bîyero abirnayîş.

Seba ke demeyê restorekerdişî de destkarîyêk taybetîyanê kulturî û tarîxî yê Laleşê Nûranî ser o nîyero kerdiş, yanî seba ke xusûsîyetê orîjînalî yê bîna nîyerê xeripnayîş, komîteyêka xususî ke cematê rûhanî yê êzidîyan û wezaretê dîyanetî yê Kurdîstanê Başûrî ra virazîyaya, do serpereştîyê projeya restorasyonî bikero.

Cayo pîroz yê dînê kurdan êzidîyîye Laleşê Nûranî Kurdîstanê Başûrî de mîyanê şaristanê Duhok û Mûsilî de qezaya Şêxanê de yo. Goreyê tayê çimeyan ra, Laleşê Nûranî hîrê hezarî serrî verê mîladê ra awan bîyo.

# Leyla Zana rê hîrê serrî ceza


Parlementera wextêk yê kurdan Leyla Zana

**Dîyarbekir (Rûdaw) -** Leyla Zana bi munasebetê ke "propagandaya rêxistine kerda" hîrê serrî ceza ro aye ameye birnayîş.

Dewaya parlementera wextêk yê kurdan Leyla Zana roja 08.04.2010 de mehkemeya cezaya girane yê 5. yê Dîyarbekirî de, bê ke avûkat beşdar bibo, celseyê qerarî virazîya. Û nê celseyê peyênî yê mehkemekerdişî de hîrê serrî ceza ro Leyla Zana birîya.

Heyetê mehkema, qerar de nîşan dayo ke Leyla Zana qiseykerdişo ke serra 2008î de kongreya cematê demokratîkî (Demokratik Toplum Kongresi) de kerdo û hewna, qiseykerdişo ke aktîvîteyê ronîştişî ke seba lîderê PKK ser ra hewanayîşê tecrîtî virazîyabî de kerdo, goreyê qanûnanê dewlete nê qiseykerdişan de sûc estbîyo.

Avûkatê Leyla Zana Mesut Beştaşî derheqê nê qerarî de va: "Seba ke Leyla Zana beyanatê netîceyê peyênî yê kongreya cematê demokratîkî wendo, ceza girewte. Goreyê fikrê ma ra, no mudaxelekerdiş o ke ro azadîya îfadekerdişê fikrî beno. Leyla Xanime, netîceyê fikrî ke kongreya cematê demokratîkî tesbît kerdê, wend. Ma şênê vajin ke no qerar, azadîya îfadekerdişê fikrî mîyan ra dareno we."

Avûkat Mesut Beştaşî beyanatê xo de va: "Cezaya ke dîyaya, sînorê cezayêka normale ra zêdeyêr a. No zî nîşan dano ke Leyla Zana çiqas binê teda de ya." Avûkat Mesut Beştaşî va: "Ma qerar qebul nêkenê, ma benê mehkemaya temyîzî." Û ser o zêdna va, "Leyla Zana seba fikrê xo des serrî ra vêşêr zindan de rakewte. Leyla Zana vana, 'Eke îcab bikero ez hewna seba fikrê xo kewna zindan.' Na cezaya ke ro Leyla Xanim birîyaya, bi hawayêko zelal nîşan dana ke Tirkîya de azadîya fikrî çi derece de ya."

# Operasyon

**AHMET ALTAN***



Li Başûrê Rojhilat komên mezin ên leşkerî li hev tên civandin. Tevgera leşkerî ya niha wek peyamberê "operasyonek" berfireh e. Operasyonek wiha li dijî mirovên ku li wir dijîn, wê bibe neqeqiyek mezin. Dizanim "dema ku li çiyê zilamên çekdar bigerin, ti dewlet destûr nade, mafê mudaxelekirinê heye" lê ev welat dikeve pêngav û pêvajoyek nû.

Em behsa "Rêdana Kurd", guhertina makezagonê dikin. Herî dereng vê sala bê, wê hilbijartin bên kirin. Diyare ku Tirkiye wê ji nû ve avabûnekê bijî. "Hîmê dewleta" ku ji rasteqîniyên jiyanê qut, wê bi rasteqîniyên jiyanê re bê guncandin (lihevkirin). Ev guhertin, ev jinûveavakirin, wê mafê kurdên ku bi salan li vî welatî hebûna wan hat mandelekirin (înkarkirin), mafên wan nehatin dayîn, wek hevwelatiyên wekhev nehatin qebûlkirin, ji nû ve diyar bike. Ev bivê nevê ye. Bi tunedîtina nêzî çar parên civakê, ev welat nikare gava xwe bavêje serdemek nû. Dema ku Tirkiye xwe amadeyî guhertinek berfireh dike, dema ku jiyan vê zora guhertinan li Tirkiyê dike, wê çi sûda operasyonek leşkerî hebe? Operasyona ku bê kirin, gelo wê "çekdarên çiyê" bi carekê ji holê rake?

Bîst û pênc sal in ku operesyon tên kirin. Mirov dimirin, lê encam naguhere. Niha jî wê mirov bimirin û encam neguherin. Heke ku operasyonek wiha bibe, wê armanca vêya ne "li PKK'ê xistin û ew bêhêzkirin" û filan bêvan be. Armanca operasyonek wiha encax wê serobinkirina Tirkiyê, bi dîmenên darbestên bi xwîn rageşkirina derûdorê, benddanîna li pêşiya guhertinan be.

Di destên daxwazkarên ku dixwazin guhertinê rawestînin de, zêde derfet nemane. Hêdî hêdî ber bi qonaxa bikaranîna "çekên xwe yên dawî" ve diçin. Bi rêkûpêkkirina operasyonek bi xwîn a berfireh, wê bikin ku PKK jî li bajaran ji vêya re bersivek terorî bide. Li cihekî dikarin hinekî din jî hesabê domandina "pergala heyî" bikin.

**Wê di maweyek dirêj de bi kêr bê?**

Bi kêr nayê. Lê pêkan e ku di maweyek kin de derdorê bikin gola xwînê, mirovan bikujin, guhertinê bo demekê jî be rawestînin. Hikûmeta sivîl divê operasyonek wiha rawestîne. Bi pêşbaziyek nîjadperestî piştgiriya operasyonek wiha, ji bilî kuştina mirovan û ji bêwateyî rawestandina guhertinê pêve, wê bi kêrî tiştekî din neyê. Divê em rewşa "bêpevçûniyê" bidomînin. Ji ber em hem deyndarê Tirkiyê ne û hem jî deydarê mirovên ku li wê herêmê dijîn in.

We hevpeyvîna muhteşem a ku Eylem Duzyol li Diyarbekirê kezeba mirov dişewitîne xwend? Bi ya min divê serokwezîr jî, wezîr jî, serekerkan jî wê hevpeyvînê bixwînin. Divê bibînin bê ew mirovên ku dixwazin ew wan "bikujin" ji kuderê çûne çiyê. Bêyî ku bala xwe bide wê birçîtiyê, şerpezetiyê, êş û janê dema ku li wê herêmê nerî, bi tenê dîtina "mirovên li çiyê" ji "korîtiya ku hatiye hilbijartin pê ve" nikare bibe tiştekî din.

Divê kuçeyên Diyarbekirê, kolîtên wan, yên ku ji gundên xwe yên şewitî reviyan û xwe spartine kolîtan, yên ku hewl didin bi mehaneyên pêncî şêst lîreyî bijîn, yên ku nikarin nên bibin malên xwe jî bibînin. Ma dewlet tenê ji "çiyayên" vî welatî berpirsiyar e, ji kuçeyên wê, malên wê, ji birçiyên wê ne berpirsyar e? Heke hûnê "operasyonê" bikin, pêşî "li dijî hejariyê" ka operasyonekê bikin. Bi nîvê pereyên ku hûnê mirovên li çiyê pê bikujin, ji belengazên kuçeyan re derfetên kar vekin. Karê bingehîn yê dewletê ne "kuştin", danjiyan e. De ka wan mirovan bidin jiyan bo ku ew bijîn û bergiriyan bistînin. Gelo bergiriya ku yekem bi hişê we dikeve, xwe rapêçana bi çekan û çûyina kuştina wan e?

**Van operasyonan rawestînin**

Zarokên tirk û kurdan bê sedem bi hev nedin şikandin. Di dinyaya ku Amerîka û Rûsya ji bo tunekirina "ji sê çarêkên çekên nuklerî" hevpeymana dikin de, pevçûn, şer zêde nadomin. Li dinyayê jî dom nake, li Tirkiyê jî. Di dema ku dinya li ber deriyê serdema aştiyekê radiweste, ev operasyon wê li dijî rasteqîniyên demê jî, berjewendiyên welat û wîjdanê mirovan jî be. We kuştin ceriband, bi kêrî tiştekî nehat. Ka vê carê rawestin. Ka rawestin da ku em bi yek destî biceribînin ku mirovan bidin jiyandin.

**Ahmet Altan Rêvebirê Giştî yê rojnameya tirkî Taraf e*

**Wergera ji tirkî: Şengül Oğur**

# Dahatûya rojnameyên bêreng tune

**HÊMIN EBDULLA***



Pirsek heye û divê em bi cidî bersiva wê bidin: Gelo pêwîstiya Kurdistanê bi medya sivîl a bê reng maye? Bi baweriya min, na. Ji ber ku tiştê doh pêwîst bû, ne merce îro jî pêwîst be.

Tê bîra min dema ku yekemîn hejmara rojnameyeke sivîl a bêreng derket û li jêr keleha Hewlêrê min ew ji Sîrwanê rojnamefiroş kirî. Ji kêfan ez sermest bibûm. Di wê demê de, ku derfeta bîr û boçûnên azad li Kurdistanê pir kêm û teng bû, derketina rojnameyekê ku propaganda ji ti partiyan re nedikir, weke hilatina rojê ya piştî şeveke dirêj û tarî bû. Derketina rojnameyeke bi wî awayî di wê demê de, tiştekî hêja û balkêş bû. Ewqasî balkêş bû ku xelk amade bûn hevkariya darayî bidinê da ku berdewam be.

Piştî van hemû salan, dema ez berê xwe didim heman rojnameyê, heman hestên berê min nagirin. Ev hest jî ne girêdayî wê yekê ye ku ez di rojnameyeke din de kar dikim. Lê ji ber ku êdî ez ji rojnameyên bê reng bêzar bûme. Hest dikim ji niha pêve, divê hemû rojnameyên kurdî rengîn bin û bi reng û tameke xwe ya taybetî bên naskirin. Li seranserê cîhanê jî wiha ye.

Li Holanda ku ez lê dijîm û rojnamevaniyê dixwînim, ti rojnameyeke ku bê reng û tameke xwe ya taybetî be, tune. Kovar û rojnameyên Çepgiran, yên rêxistin û partiyên wan yên cuda hene. Parlamenterên van rêxistin û partiyan jî piraniya pirsiyarên xwe yên li parlamen li ser bingeha nûçeyên ku ji rojnameya xwe ya çep "De Folksrant" werdigrin, dikin. Rastgir, oldar û grupên din jî bi heman awayî. Her grupeke diyarkirî ya civakê, xwedî medya xwe ya taybet e.

Di televizyonê de jî Holenda heman sîstemê dimeşîne. Erkê kanalên dewletê bi tenê dayîna dema pexşandinê ye bo kanalên ku yan çep, rast û oldar û ...htd in. Wate, tiştek bi navê medya bê reng tune. Li Brîtanya û Almanya û welatên din ên Ewrûpayê jî heman rewş li dar e. Çepgir rojnameyên xwe dixwînin, rastgir jî nûçeyan ji medyaya xwe werdigirin.

Xaleke hevbeş ku li cem van hemû kanalên medyayê heye, ew e ku hemû hewl didin bi prensîpên karê rojnamevaniyê ve girêdayî bin û karê xwe bi awayekî profesyonel cîbicî bikin. Ango tevî ku boçûnên xwendevanên wan cuda ne, lê di warê gihandina nûçe û agahiyan de, wek hev hewl didin bîrûbaweriyên cuda li ber çav bigirin û mafê ti kesî binpê nekin.

Li Ewrûpa awayekî din bo derxistina rojnameyan heye. Hinek rojname bo bilindkirina hejmara tîraja xwe û bo zêdekirina hejmara firotina berhemên xwe, hawara xwe dibin ber şêwaza herî nizim a karê rojnamevaniyê. Ew pir caran hinek babetan bi tenê bo kişandina bala xwendevanan gur dikin û dixin rojevê. Lê dema tu mijarê dixwînî, tu dibînî ku bi tenê gurkirin û livandina hestan e û nirxeke mijarê ya rojnamevanî tune. Loma berhemên van rojnameyan, ji bilî tîraja wan a zêde, ji aliyê kesên hişyar ve bi cidî nayên wergirtin û pir kêm weke çavkanî tên bikaranîn.

Li Kurdistanê jî mînakên weke yên li jor hene. Hinek babet tenê bo kişandina bala xwendevanan tên gur kirin û dikevin rojevê. Medya sivîl di van salên borî de xizmeteke pir mezin daye medya kurdî. Herwiha hebûna medya sivîl di serdema xwe de pir giring û erênî bû. Lê dibe niha ku medya opozisyonê bi awayekî çalak kar dike û partiyên desthilatdar jî hêdî hêdî wê yekê fam dikin ku êdî pêwîstiya wan bi ragihandina partîtî (bi wateya klasîk a peyvê) nemaye û pir baştir dibe ku ji dêlva hebûna hejmareke zêde ya medya û rojnameyên bê reng û bê bêhn, xwînerê kurd jî hînî xwandina rojnameyên rengdar û nêzîkî fikra xwe bibe.

Dahatû di van corê rojnameyan de ye. Dibe ku Rûdaw bi profayla xwe ya netewî û profesyoneliya xwe belgeyeke ron be li ser rastiya axaftinên min.

**Hêmin Ebdulla Rêvebirê Nivîsînê yê Beşa Soranî yê Rûdawê (Çapa Ewrûpa) ye.*

## Ji Xwîneran

### Bila rûpelên almanî jî hebin

Bi rastî pir giring e li Almanya rojnameyeke kurdî hebe ku bi mejî û hizirkirineke kurdî nûçeyên li ser kurd û Kurdistanê belav bike. Herwiha li ser bûyerên welatê me şîroveyên pêbawer bide xwendevanên kurdên ên li Almanya. Ji ber vê yekê jî kêfa me gelek tê dema em li stasyonên tirênan di nava rojnameyan de, rojnameyeke kurdî jî dibînin. Lê mixabin em yên ku li derveyî welat ji dayik bûne, kurdiya me têrî wê yekê nake ku em rojnameyeke kurdî bi hêsanî bixwînin. Lewma ez pêşniyaz dikim ku di nava 32 rûpelên Rûdawê de çend rûpelên almanî yan îngilîzî jî hebin ku tê de nûçe û raporên gelek taybetî li ser bûyerên cuda yên civakî, siyasî, aborî, kulturî û hunerî yên her çar beşên Kurdistanê hebin. Baweriya min jî heye ku Rûdaw dikare vî karî bike, ji ber ku îmkanên wê hene.

Tevî silavan, birayê we
**Kawar Kurdo**



### Rûpela jinan

Tevî ku ez gelekî kêfxweşim ku em jî li Ewrûpayê bûne xwedî rojnameyek bi kurdî, lê dîsa jî çend têbîniyên min hene. Bala min kişand ku hûn di nav rûpelên xwe yên jinan de gelek caran cîh didin nûçeyên li ser şîdeta li ser jinan. Ji aliyekî ve tiştekî gelekî baş e ku ev babet bi berfirehî û bi awayekî berdewam di nav rojnameyeke kurdî de cîh bigre, ev cihê dilxweşiyê ye û nîşana girîngîpêdana vê mijarê ye. Ji ber ku bi rastî jî pirsgirekek wiha di nav civaka me de tê jiyan kirin. Lê li aliyê din mirov wiha hîs dike ku jin tenê bi şîdela li dijî xwe rûbirû ye û ti pirsgirêkên wê yên din tune. Bêguman jiyana jinan ji şîdeta li dijî wê dewlemendtir e. Li gor min, ma demkî ku rûpelek we ya jinan heye, pêwîste mirov bi awayekî berfirehtir berê xwe bide mijarên jinan. Ji bilî vê yekê jî, eger di nav nivîskarên we de hinekên jin jî hebûna, jinan wê xwe bêtir di rojnameya we de bidîta. Lê dîsa jî ez serkeftinê ji we re dixwazim û destê we sax be.

**Nûrsel Kaya**
Bielefeld/Almanya



**Nêrîn, Rexne, Pêşniyaz?**
Ji vir re bişîn:
**info@rudaw.eu**

# Hamburger êdî BES e, bijî Hêştirburger!



Her çiqasî biçûk be jî, lê belê çavên dinyayê li ser nûbûnên ku li wê derê çêdibin e. Li seranserê cîhanê, hema hema goştê Hamburger ji goştê çêlek û mirîşkan tê çêkirin. Dubay dest pê kir wê guhertinê çêbike.

Li Dubay xwarina li ser piyan ku bi navê Hamburger tê naskirin, êdî ji goştê hêştiran çêdibe. Birêvebirê xwaringeha Lokal House li Dubay Ramits, ji CNN re got ku milet ji xwarina goştê mirîşk û çêlekan bêzar bûye, êdî dixwaze goştê hêştiran jî biceribîne. Ramits berdewam kir û got: "Goştê hêştiran ji bo tendurustiya mirovan baştir e, dohn û kolestrola tê de kêm e. Ji ber vê yekê jî, hewesa milet a ji bo xwarina Hamburgerên ji goştê hêştiran zêdetir bûye". Birêvebirê Lokal House destnîşan kir ku goştê hêştiran ji yê mirîşk û çêlekan erzantir e.

Li aliyê din li cihê nanê ku ji bo Hamburger tê çêkirin û formata wê standart e, li Dubay nanekî din bi kar tînin, ew nanekî herêmî ye û bi navê El Xemîr tê naskirin.

Weke tê zanîn hakimê Dubay di sala borî de, şîrketek bi navê Al Nasma çêkir û di wê şîrketê de şokolata bi şîrê deveyan tê çêkirin.



# Di 3 salan de bi 13 milyoneran re raket

Timayî û pere bûye her tişt, gelek kes nirx û hêjayiyên xwe yên kesayetî bi temamî dikin bi qurbana çend qirûşan da ku jiyanek bilind pê bijîn. Mandeline Amber a 22 salî, ji bo ku jiyanek xweş û sosyetîk bijî, xwe di înternetê de daye ber bazarê û di nava sê salan de tam bi 13 milyoneran re bûye heval û seks kiriye. Mandeline ji çapemeniyê re behsa xweşbûna jiyana xwe dike û dibêje ku wan milyoneran ji wê re tiştên buha kirîne, vexwarinên herî buha pê dane vexwarin û ew qet ne poşman e.

Li gora lêkolînan, di alozî û jirêderketina zarokan de (bi taybet keç) rola televizyon û bi taybet jî rola rêzefîlman pir e. Xweşî û dewlemendiya ku di rêzefîlman de tê pêşkêşkirin, bandorek mezin li keçan dike û ew jî dixwazin bibin wek wan şahbanû û stêrkên rêzefîlman û di şato, qesr û qonaxên bêhempa de bijîn. Ji ber vê yekê jî, gelek keç ji malên xwe direvin, tên xapandin û piştre jî dikevin rêyên xerab û jiyana wan têk diçe.




## "Gelek xwazgînî hatin, ez qayîl nebûm"



**Rûdaw -** Stranbêje ciwan Nîna Cemal ji 7 saliya xwe ve li Awistralyayê dijî û wek gelekan ji me, dilê wê bi evîna welatê wê Kurdistanê dişewite. Nîna Cemal xwediyê albûmekê ye û strana "Aşiqî tom" jî li ser dildariya xwe ya Kurdistanê gotiye.

Nîna Cemal di 25 saliya xwe de cara yekem serdana Kurdistanê kir û ragihand ku evîn û hisreta Kurdistanê tucarî ji dilê wê derneketiye.

Nîna xanim di hevpeyvînek li gel Rûdawê de got ku ji bo karê hunerê ew dev ji xwendina xwe bernade û ew dixwaze ku di pêşerojê de kurdekî bedew û rastgo bibe hevserê wê. Nîna xan herweha dibêje ku gelek xwazgîniyên wê hatine, lê wê hemi red kirine.

Nîna Cemal, keçek bedew e û di hunera kurdî de nûhatî ye, yek ji stêrkên pêşeroja hunera kurdî ye. Rengên şîn û kesk rengên wê yên bijare ne û li ber ahenga stranên hunermend Kerîm Kaban û Qadir Kaban mezin bûye.

# Mam Celal Ji xwarina Evdilrehman Seqizî hez dike



**Mam Celal li gel hevjîna serokê Fransayê Carla Bruni**

**Seqiz (Rûdaw) -** Evdilrehman Seqizî (kurdê Rojhilatê Kurdistanê) ev zêdeyî du sala ye wek aşpêjê taybet ê Serokkomarê Iraqê Mam Celal, xwarinê ji Mam Celal û xanima wî Hêro xan re amade dike.

Berê Evdilrehmanê Seqizî wek aşpêjê Polîtburo ya YNKê li havîngeha Dokan û Qelaçolan nan û xwarin ji Mam Celal re amade dikir. Berî du salan li ser xwestina Mam Celal, Evdilrehmanê Seqizî bi fermî li Bexdayê bû aşpêjê koşka serokkomariyê.

Evdilrehman ku ev zêdeyî 20 salan wek aşpêj kar dike, ji alî Mam Celal ve pir tê hezkirin. Ji ber ku Evdilrehman birincek pir xweş dipêje, Mam Celal bi navê "Rehman Pîlaw (Rehman Birinco) gazî wî dike.